HERDEM RASTÎ

# BasNûçe

ISSN 2148-5305

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar: 109 4 - 10 Tîrmeh 2016 basnuce.com

Zubêr Salih:

**Ez ji bo welat distirêm**



R16

## Siyaseta kurd li Rojava

# Li parçê biçûk parçebûna mezin



Çavdêrên Rojava dibêjin yek ji arîşeyên navbera rêxistinên Rojava nebûna ajandaya wan, girêdana wan bi du xetên sereke yên li Başûr û Bakurê Kurdistanê ye. Hewldanên Barzanî yên nêzîkkirina hêzên Rojava û têkçûna rêkeftinên Hewlêr û Duhokê û tevî navbeynkariyên DYA'yê û lihevnekirina wan, kurdên Rojava dixe nav metirsiyê.

Pispor dibêjin 'pêşeroja Rojava bêyî Başûr û ya Başûr bêyî Rojava ne din bin ewlehiyê de ye.' Herwiha radigihînin ku divê ENKS û PYD ji bo berjewendiyên netewî werin gel hev û êdî nebin beşek ji rikberî û nakokiyên dewletên heremê.

Li gor çavderan eger hêzên navnetewî karê xwe bi DAIŞ'ê re biqedînin û rejîm berê xwe bide PYD'ê xeter heye ku Amerîka û Rûsya li dij tasfîyekirina destkeftên kurdên Rojava dernekevin û diyar dikin ku tekane beralîkirina vê xeterê pêşketina tifaqeke cidî di navbera RHK û Rojava de ye.

R02-3-4



Dr. Kamal Sido:

## Divê PDK û PKK êdî bi hevûdin re biaxivin!

"Kurd hêj ne gihiştine kenara asayîşa aramiyê. Kêştiya wan di nav deryayekî de ye, pêşketin heye lê wê li kuderê peya bibin em nizanin."

R08-9

Barzanî:

## Şer ji bo Bakur wêranî ye

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî pêşwaziya şanda PSK'ê kir. Şanda PSK'ê derbarê şerê Bakur de nîgeraniya xwe anîye ziman û di derbarê derbasbûna proseya siyaseta legal Barzanî agahdar kir. Barzanî xemgîniya xwe ji bo şerên li bajarên kurdan ragihand û diyar kir ku divê siyaseteke aqilane ya serwer bê meşandin. Barzanî got ji bo parastina canê xelkê sivîl û aramiyê seaeteke axaftinê ji 10 salên bi şer baştir e.



R07

## Zazakî Serewedaritişê Şêx Seîdî

R14

## Zarokên kurd bê wêje mezin dibin

R15

# Li parçê biçûk, parçebûna mezin

Rojava di dîroka siyaseta kurd ya modern de, di nav parçeyên herî pêşî de ku tevgerên polîtîk yên herî bingehîn lê dirûv girtine tê. Pena-berên siyasî yên kurd ku piştî raperîna 1925'an ji Bakur û di salên paş de ji Rojhilat û Başûr derbasî Rojava bûn, bûn sedema bihevrebûna kevneşopiyeke polîtîk li Rojava.

Xoybûna ku 1926'an ji hêla siyasetmedarên ji xetên cuda li Rojava kom bûn ve hat avakirin, di dîroka siyaseta kurd de yekem rêxistine ku weke rêxistineke sîwanî û kongre hatiye avakirin. PDK-S a ku di destpêka salên 1960'î de ji aliyê Nureddîn Zaza û Osman Sebrî ve hate avakirin, ji rêxistinên herî kevnar tê hesibandin.

Rewşa nû ku piştî raperînên Bihara Erebî ku sala 2011'an Sûriye xist bin bandora xwe, ji bo vî parçeyî ku tenê piştgirîdayîna serhildanên parçeyên din sînordar dima derfetekî nû peyda kir. Kurdên Rojava piştî raperînên li Suriyê, di şerê li dijî tundrewan bûn hêzeke sereke û bala cîhanê kişandin. Niha li Sûriye ya ku li ser xaka wê prototîpa Şerê Cîhanê yê Sêyem dimeşe de, pirsgirêkên navxweyî yê kurdên Rojava pêşeroja gel û welat dixe bin metirsiyê.

Tevgera kurd ya li Rojava ku li gor mîhwerên leşkerî û polîtîk yên li herêmê xwe bicih dikin û ji hevkariya hev xwe dûr dixin. Ev bê aqûbetî jî li ser îdare, pêşeroj, demokrasî, aramî û ewlekariya Roja-vayê Kurdistanê dibe sedema metirsiyê.

Nebûna rêxistinbûyeneke resen ya kurdên Rojava ku heta niha piştevanên tevgerên siyasî yên li parçeyên din bûn, sedema herî girîng e ku bandorê li ser rewşa wan ya heyî dike. Nakokiyên di navbera herdû hêzên sereke ENKS û TEV-DEM'ê de jî ku weke baskên PDK û PKK'ê li Rojava tên zanîn, ji ber hevrikî û nakokiyên navbera PKK Û PDK'ê de peyda dibin.

Li Rojava proseya ku bi zextên PYD ya xwedî serdestiya çekdarî, yên li ser ENKS'ê û ENKS jî ku tenê bi siyaseta muxalefeta PYD'ê sînor-dar dimîne, bi nasnekirina hevdû û duristnekirina pêwendiyan û dijminatiya ku her zêde dibe, birêve diçe.

Rewşa ku hem ENKS û hem jî PYD ku ne bi hevdû re, lê bi rêxistinên ereb re hevkariyê dikin û li hemberî hevdû helwesteke tûj distînin, metirsiyê li ser pêşeroja Rojava peyda dike. Lihevnekirina herdû hêzên kurd ên sereke dibe sedema encamên ciddî, koçbûna girseyî ya kurdan ji Rojava, windakirina hejmareke zêde ya însanan, pirsgirêkên aborî û civakî.

Kiryarên PYD'ê yên totalîter ku di demên dawîn de gelek caran tên rojeva parêzvanên mafên mirovan, dibe sedema wê yekê ku cîhan bi nîgeranî û gumanbarî li tevgera siyasî ya kurdên Rojava binêre.

**Rojava bê Başûr û Başûr bê Rojava ne din bin ewlehiyê de ye**

Hewldanên Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî yên nêzîkkirina herdû hêzan û biserneketina rêkeftinên Hewlêr û Duhokê û herwiha tevî hemû navbeynkariyên DYA'yê û lihevnekirina van hêzan, destkeftiyên kurdên Rojava dixe bin metirsiyê.

Çavdêrên Rojava arîşeyên herî mezin ên siyasî û rêxistinên li Rojava bi nebûna ajandayên wan, bê îradebûn û endeksbûna wan bi du xetên sereke yên li Başûr û Bakurê Kurdistanê, yanê bi PDK û PKK'ê ve gi-rêdidin.

Pisporên ku nirxandina 'pêşeroja Rojava bêyî Başûr û ya Başûr bêyî Rojava ne din bin ewlehiyê de ye' dikin, radigihînin ku divê ENKS û PYD ji bo berjewendiyên netewî werin bal hevdû. Herwiha diyar dikin ku eger nakokî û dijayetiya di navbera herdû aliyan de bidome wê deskeftên kurdên Rojava bikevin bin xeterê. Pispor destnîşan dikin ku eger lihev nekin hêzên Rojavayî wê tenê rola piyade bidinê wan û piştî ku rejîmê opozîsyon tasfîye kir, dor wê were Rojavayê Kurdistanê. Çavderên siyasî radigihînin ku tevî hevkariya leşkerî ya herdû hêzên mezin DYA û Rûsyayê bi hêzên kurd re, venexwandina PYD'ê bo he-vdîtinên Cenevrê, divê weke alarm were dîtin. Li gor çavderan eger hêzên Rojavayî karê xwe bi DAIŞ'ê re biqedînin û rejîm berê xwe bide PYD'ê xeter heye ku Amerîka û Rûsya bi awayekî cidî li dij tasfîyeki-rina destkeftiyê kurdên Rojava dernekevin û diyar dikin ku tekane beralîkirina vê xeterê pêşketina tifaqeke cidî di navbera RHK û Roja-va de ye.

Di dosyaya BasNûçe'yê ya bi navê "Di siyaseta kurd de lêgerînên yekitî û alternatîfê" ya beşa Rojava de, me cih da nêrînên rayedarên ENKS û TEV-DEM û kesayetên Rojavayî.

**ENKS çiye?**

Encûmena Niştimaniya Kurd li Sûriyê (ENKS) 26 Cotmeh 20112'an li Qamişlo bi beşdarbûna 13 partiyan, gelek rêxistinên sivîl ên civakî û hin şexsiyetan hat avakirin.

Di bin banê ENKS'ê de bi şeklê xwe yê dawîn ev partî û sazî cih digi-rin:

-Partiya Demokrata Kurdistanê – Sûriye ((PDK-S)

-Partiya Wekhevî û Demokrasiyê – Sûriye (PWDKS)

-Partiya Demokrata Netewî ya Kurdên Sûriyê (PDNKS)

-Partiya Demokrasiya Pêşverû ya Kurd – Sûriye (PDPKS)

-Partiya Yekitiya Kurd – Sûriye (PYKS)

-Tevgera Çeksaziyê

-Tevgera Ciwanên Kurd

ENKS ku heyama berdevkiya wê her 3 mehan carekê digûhere, piştî damezrandina xwe her sê kongreyên xwe jî li Qamişlo pêk anî. ENKS'ê li herêmên Qamîşlo, Hasekê, Kobanê, Efrin, Amûde, Dirbe-siyê, Dêrika Hemko, Dêrik, Tilhemis û herêmên Şam û Helebê meclîs û komîteyên xwe avakirine. Partiyên ku di bin banê ENKS'ê de cî di-girin hemû nêzikî xeta PDK'ê ne. PDKS, di dawiya salên 1950'î de ji aliyê rewşenbîrên kurd ên navdar Osman Sebrî û Nûreddîn Zaza ve hat damezrandin.

ENKS a ku di dawiya 2012'an de beşdarî opozîsyona Sûriyê bû, di He-vpeymeniya Niştimanî ya Hêzên Şoreşger û Muxalîf (SMDK) ku sîwa-na komên opozîsyonê ye de û 114 endaman pêk tê, bi 11 endaman tê temsîlkirin.

ENKS xwe weke parçeyekî Şoreşa Sûriyê dibîne û dixwaze şerê li we-lat bi 'rêyên siyasî û bêyî Esad' were çareserkirin. ENKS ji bo kurda û gelên din jî sîstema federasyonê daxwaz dike.

ENKS li dijî yasaya YPG'ê ya leşkeriya neçar derdikeve û dibêje parastina welat peywîra herkesê ye û bi darê zorê nayê şer kirin. Ji ber ku malbatên ENKS'yiyan ji aliyê YPG'ê ve bi neçarî ji bo leşkeriyê tên birin, di navbera aliyan de gelek caran arîşe derdikevin.

ENKS'ê di serî de DYA, Tirkiye û Fransa li gelek welatên Ewropayê nunertiyên xwe vekirine û bi van welatan re di nava peywendiyên baş de ye. ENKS weke en-damekî hevpeymeniya opozîsyona Sûriyê beşdarî hevdîtinên Cenevrê û gelek civînên navnetewî ên li ser PÊŞEROJA Sûrıyê pêk tên dibe.

**Rêkeftinên ENKS û TEVDEM'ê**

ENKS û TEV-DEM di destpêka şerê li Sûriyê û Rojava carna hatin ba hev û bi hev re tevdigeriyan, lê belê bi dem re pêwendiyên wan bi hev re qût bûbûn. Rêxistinên siyasî yên li Rojava ji bo diyarkirina çares-nûsa kurda û kurdan ji êrişan biparêzin, ketinnav hewldanên hevgirtinê. Bi pêşengiya Ser-okê Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) Mesûd Barzanî, partiyên siyasî yên li Rojava, di Hezîrana 2012'an li Hewlêrê civiyan. Piştî rêkeftinê ENKS û TEVDEM a k udi pêkhatina Konseya Kurd a Bilind de cih girtin, di mijara şirîkatiya rêvaberiya Rojava de lihev kirin, lêbelê îmze li ser kaxizê man.

ENKS û TEVDEM ku bi banga Serokê Rêveberiya Herêma Kur-distanê Mesûd Bar-zanî di Cotmeha 2014'an de dîsa li Hewlêrê civiyan û di mijarên rêveberiya hevbeş, hêze-ke hevgirtî û yekgirtina siyasî de rêkeftibûn.

Lêvegera Siyasî bi hilbijrtina 24 kesan ku 12 jê ji ENKS û 12 jî ji TEVDEM'ê pêk dihat hatibû avakirin. Li gor rêkeftinê 6 kesên mayî jî wê ji hêla 24 kesên ku ji ENKS û TEVDEM'ê pêk dihat bihatana hilbijartin.

Di rêveberiya ku Partiya Demokrata Kurdistanê–Sûriye (PDK-S) bi 2 endaman dihat temsîlkirin û 8 partiyên din jî her yek xwedî kursiyekê bûde 2 endamtî jî ji bo kesên serbixwe hatibûn dayîn.

Lêbelê partiyên El Parti, El Wehde û El Wifaq ku di bin sîwana ENKS'ê de bûn, di hilbijartinên Lêvegera Siyasî de ku wê rêve-beriya Rojava pêk bihata de, dengê xwe dan TEV-DEM'ê. Li ser vê yekê ENKS'ê her sê partî îhraç kir. Hewldanên rêkeftinê yên di navbera aliyan de li Duhokê jî bi ser neketibûn û pêwendî qût bûbûn.

**TEVDEM çiye?**

Tevgera Civaka Demokratîk (TEVDEM) jî li Rojava ji partî û rêx-istinên li ser xeta PKK/PYD'ê û bi tifaqa hin saziyên ereb û suryani-yan pêk tê û hêza xwe ya sereke ji PYD'ê distîne. YPG, wek hêza leşkerî ya TEVDEM'ê tê dîtin. TEV-DEM ji bilî organîzekirina rêveberiya her sê kantonên Rojava, ji bo Federasyona Rojava-Bakûrê Sûriyê hin meclîs ava kir. TEV-DEM li Rojava bi bi hêzên ereb re di bin navê Hêzên Sûriya Demokratîk de te digere. TEV-DEM a u di şerê li dijî DAIŞ'ê de xwedî hêza leşkerî YPG'ê ye, bi rejîma Sûriyê re jî xwedî pêwendiyên baş e. YPG a ku DYA û Fransa piştgiriyê didinê, di qada şer de tekane hêze ku hêzên Rojavayî hevkariyê ligel dikin. Hêza YPG'ê zêdetirî 30 hezar şervana ye.

TEVDEM ji ber ku îdeolojîk û polîtîk di xeta PKK'ê de ye, arîşeyên wê yên ligel ENKS'ê, jêdera xwe ji hevrîkiya di navbera PKK û PDK'ê distîne.

Pispor çareserkirina arîşeyên di navbera ENKS û TEVDEM'ê de bi derbaskirina pirs-girêkên di navbera PKK û PDK'ê ve girê didin.





**Serokê ENKS'ê Îbrahîm Biro: PYD me weke şirîk qebûl nake**

"Ew peymanên di navbera me, ji aliyê PYD ve pêk nehatine. Nehêlin ku em bibin şirîk. Em sed peymanan jî bi hev re dêynin, em dizanin ku ew peyman biser nakevin. Di heman wextî de me xwestiye û gotiye ku bila hêzeke kurdî hebe, hêzên niha heyî girêdayî partiya ne û ev dibin sedemên sereke ku ew rêkeftin bicih neyên. Li her welatî dema ku bereyekî çekdar hebe, dengê çekan zêdetir der-dikeve. Îro me ew derfet çênebûye ku hêza me ya leşkerî di Rojava de hebe. Ev jî rola me qelstir dike bêguman. Tevî gelek derfetên din yên xurt di destê me de lê ew derfet li hember dengê çekan xurt nîn in.

Me beriya niha jî karê xwe siyasî dikir. Niha hêzeke me ya leşkerî jî heye. Lê astengiyan derdixînin ku hêza me li Rojava be. Ji ber wê yekê rola me qels xuya dike. Xelk bi me re ye. Di warê siyasî de jî hemû derî li me vekirîne. Em xebatên xwe dimeşînin. Lêbelê niha dengê çekan bi ser hemûyan dikeve.Îro em wek tevgereke siyasî nêzîkî 60 salen e kar dikin, me karê çekdarî nekir, lê piştî qeyrana Sûriyê ku gihişte vê astê, me bawerî heye ku mafekî me yê rewa ye em berevaniyê di ber xelk û axa xwe de bikin. Em karibin di aliyê leşkerî de jî xwe biparêzin. Bi gelek aliyan re em danûstendinan dikin. Ji aliyê PYD hin astengî hene, ji ber rêkeftinên wan û rejîmê, rêkeftinênên me naçin serî. Em hîn berdewam dikin ku em bikarin bi rengekî rêkeftinekê karibin derbas bikin. Di vê demê de hêviya me tune ye."

**Endamê Polîtbûroya PDKS'ê Nurî Brîmo: PYD ne bi destê xwe ye**

""Rejîma Esad nahêle ku peymanên Duhok-Hewlêrê pêk bên. Rejîma Esad zextan li ser PYD'ê dike û astengiyan derdixîne. PYD ne bi serê xwe ye û rejîm qebûl nake ku ENKS şirîk be li Rojava di warên siyasî û leşkerî de. Rejîm tenê PYD'ê dihesibîne û PYD jî tu kesê qebûl nake. Me gelek caran hewl da ku em bibin şirîk. Lê PYD'ê qebûl nake. Em fêm dikin ku rejîm qebûl nake. Biryarên PYD û Qendîlê di destê re-jîma Esad û Îranê de ne. Rejîm û Îran qebûl nakin ku ENKS bibe şirîk, ji ber ku EKNS li ser rêbaza Barzanî ye, projeya xwe ya netewî, demokratî heye, federaliyê ji bo Rojava û dewleta kurdî li Başûr dixwaze.

Ev saleke tu civîn çênebûne di navbera hêzên kurdî de. Baweriya me bi wan nemaye. PYD destikê rejîma Îranê ye.

Me Pêşmerge hene, bi hezaran qadro hene. Lê ENKS kirine aliyekî mehkum. ENKS ne li dij şerê çekdarî ye. Lê em li dij şerî birakujiyê ne. Ne şerê çekdarî. Aliyên din nahêlin Pêşmerge derbas bibin. Kurd di nava PYD'ê de nemane. Sedî 70-80 asayîşa wan ereb in, sedî 70- YPG'ê ereb in. Kurd kêm in di nav de. Lê wê derê biryar yên Şam û erebên di nav YPG û PYD'ê de ne. Me hêvî dikir şirîkatî qebûl bikirana. Me hêvî dikir wiha nebûya. Me dixwast ew peyman hemû cîbicî bibûna. Lê her ku diçe PYD ji kurd û kurdayetiyê dur dikeve. Aniha bi hezaran gencên me ji Efrînê, Kobanê, Cizîrê, Derazorê, Reqqayê xelkê me didin kuştin. Rêveberiya wan deran jî nakeve destê kurdan. Proje ya Sûriye ya demoqrat e. Ew bi xwe dibêjin. Ew ne projeya kurdan e."

**Nunerê ENKS'ê li Tirkiyê Ehmed Qasim: Qendîl û Hewlêr li hev nekin yekîtî nabe**

"Bê virda û wêda, di rastiyê de, partiyên kurd pare vebûne di navbera Hewlêr û Qendîlê da. Yên li dervayî herdûyan, bê îmkan in, bandora wan kêm e. Ji ber vê yekê, eger Qendîl û Hewlêr lihev nekin, em yeketîyê di nava hêzên kurdî de nabînin û Hewlêr û Qendîl jî dest ji Kurdistana Sûriyê bernadin.

ENKS di raghandinê de, gelekî li nav hev dixê. Wek we gotî, li hêlekê aştîvan e, û li hêlekê jî şoreşvanekî xwedî Pêşmerge ye. Lê di rastîyê de, ew Pêşmerge ne yên ENKS'ê ne, ew di bin biryarê Hêza Zêrevanî de perwerde bûne, yanî yê PDK'ê ne bi Seroketîya birêz Mesûd Berzanî. Û di rastîyê de, ENKS nikare ti hêzên çekdar ava bikê.

Peymana Duhok û Hewlêr di lihevkirinê de seqet hate amadekirin. Wekî min gotî, bingeha lihevkirinê ji Qendîl û Hewlêrê destpêdikê. Qendîl û Hewlêr îro dibînin Kurdistana Sûrî mîrate ye ji wan re. Her yek dixwazê bi ser xwe de berde. Loma partîya Pêşverû bi seroketiya Hemîd Derwêş ji ENKS'ê vekşîya, ku dema dît PDK-S jî wekî PYD dixwazê berê tevgerê bidê dervayî Sûriyê û bi ajandeyên li vacayî ber-jewendiya kurdên Sûriyê ve girêdê. Loma jî, Hemîd Derwêş projeya yekrêziyê ragihand li dûrî Hewlêr û Qendîl. Çimkî mehale Hewlêr û Qendîl di bin sîyê van rewşan de werine cem hev û li hev bikin."

**Wezîrê Karê Derve yê Kobanê Îbrahim Kurdo: ENKS'ê dijayetiya hêzên kurd kir**

"ENKS nêzîkî Opozîsyona Sûriyê ye, beşekî Opozîsyonê ye. Bi Opozîsyona Sûriyê re danûstendinên wê hene. Ew jî girêdayî Qeter û Tirkiyê ne. Ew dewlet dijminên kurda ne. Hemû kes dizane. Tirkiye, DAIŞ û El Nûsrayê bi ser me de dişîne. Lê birayên me yên ENKS'ê li Stenbolê ne, li otêlan ji xwe re runîştine. Ji xwe re lobiyê dikin. Nûner-tiya kurdan nakin. Nûnertiya kurdan bi rûniştina dijminê kurdan re tê kirin. Em li hev rûniştin me biryara xebatê bi hev re da, lê ENKS'ê karê xwe berdewam kir. ENKS dijayetiya li hember hêzên kurd domand. Ji nava Opzozîsyonê derneket. Kiryarên Opzozîsyona Sûriyê ya li hember gelê kurd şermezar nekir. Divê ENKS xwe ji van karên ne durist dûr bixe. PYD îro sîstemek daniye ev sîstem ji bo hemû kurda ye. PYD xebatan dike. Beriya her tiştî parastina gelê kurd dike. Jin û dayik û malbata nûnerên ENKS'ê hîn li Rojavayê ne em ji wan jî re xizmetê dikin. Dayikên wan, xwişkên wan hîn li vir in. Me gelek caran bang li wan kir û me got; 'werin beşdarî Rêveberiya Xweser a Rojava bibin' lêbelê ew li dû hin berjewendiyên xwe ne. Erdoğan û Beşar Esad li dijî me dîsa li hev rûdinên lê em hê nikarin li hev rûnên. Di sala 1975'an de Cezayîrê li hember kurdan ereb û ecem gihandin hevdû niha jî ereb û tirkan digihîne hevdû."

**Endamê Komîteya Navendî yê PYD'ê Mahmud Bişar: Deriyê me ji ENKS'ê re vekiriye**

"ENKS ji destpêka şoreşê heta niha xwe ji Oposîzyona Sûriyê xelas nekiriye û beşek ji wê opozîsyonê ye. Ew opozîsyona ku heta îro êrişî Rojava dike. Ji bo gelê kurd û Rojavayê Kurdistanê bernameya wê tune ye. Mafê kurdan çi ne, an mafê kurdan mafekî otonomiye, li ser vê yekê tiştekê nabêjin. Ew navê opozîsyonê li xwe dikin. Ew heta niha jî di hembêza opozîsyonê û hembêza AKP'ê de ye. Çiqas êriş bi ser Rojava de ji Cizîrê heta Efrînê tên, ev êriş bi piştgiriya AKP'ê û dewleta Tirkiyê pêk hatin. Aşkera civata navnetewî û hevpeyman jî dibêjin, em dibêjin rêxistina terorîst DAIŞ piştgiriya AKP'ê distîne.

Opozîsyon di hembeza AKP'ê de ye, ENKS jî di hembêza opozîsyonê de ye. Wê demê wê çawa yekitiyek were avakirin. Tevî vê yekê jî deri-yên me vekirîne ji berê û wir ve. ENKS heta vê demê jî dixwaze du hêzan ava bike bi navê Pêşmergeyên Rojava. 2 hêzên leşkerî wê rewşa Rojava têk bibin, wê aloziyan zêdetir bikin. Di welatekî de fikrên siyasî û partiyên siyasî hene, lê du hêzên leşkerî nabe. Hebûna du hêzên leşkerî parçekirina civakê ye û ji rê derxistina şoreşê ye. Niha jî tu hereket û hêz ne li derdora TEV-DEM û ne jî ENKS'ê were avakirin. Helwesta ENKS'ê li dij şoreşa Rojavayê Kurdistanê ye. Îro niha he-vdîtin di navbera Tirkiye, Îran û Sûriyê de. Lê dîsa jî pêwendiyên ENKS'ê dewam dikin. Êriş li ser Efrînê û tevaya gelê kurd û Kurdistanê ne. Rewşa Bakur li holê ye. Helwesteke erênî ya ENKS'ê me ne dîtiye û wan ne gotiye ez beşeke ji vê şoreşê me."

**Wezîrê Karê Derve yê Kobanê yê Berê Îdrîs Nassan: Her partî li gor berjewendi-yên xwe tevdigere**

"Hêzên kurd bi aliyan ve girêdane û ketine bin ajadeyên herêmê û navnetewî. Eger lihevkirinek bihata kirin ku aliyên kurdî tifaqeke kurdî avabikirana ku xwedî li destkeftiyên xwe derketana. Heta niha ev pêk nehatiye. Tevî gelek xebat û destkeftiyan jî, lê eger kurd hemû li pişt hev bûna wê karîban yekgirtinekê avabikin. Lê mixabin aliyê siyasî li berjewendiyên xwe digerin û lihevkirin çênabe. Mesele girêdayî hevpeyman û gelek reuneştin çêbûn. Lê rêkeftineke çênebû. Sedema vê yekê ew e ku her yek li pey berjewendiyên xwe di-gere. Di Rojava da gelek kar hatin kirin. Civaka nadewletî zêdetir piştgirî dan û nêzikî kurdan bû. Divê kurd xwedî li van destkeftiyan derkevin. Di nav vê rewşa aloz da kurdan karîn rolekê bilîzin. Karîbûn xwe diyar bikin. Di vê em xwedî li xelk û destkeftiyên xwe derkevin û heta ku em vê rewşê derbas dikin. Paşê her yek dikare li gor bernameya xwe kar bike. Lê mixabin ji niha ve dixwaze berna-meya xwe saz bike. Ev dibe sedema alozî û lihevnekirinan. Hêviya me ew eku bi hev re kar bikin û bikarin li pêşeroja xwe xwedî derkevin tevî hemû astengî û zehmetiyan. Em bi vî awayî dikarin serbikevin."

**Berpirsê Maseya Rojava yê RHK'ê Mistefa Şefîq: Kurd nikarin dev ji hêzên biyanî berdin**

"Dema ku fersend ji kurdan re derketine jî, kurdan li hev nekirine. Îro fersendekî mezin li pêşiya kurdan e. Lê mixabin parçebûna kurdan bi ser hêzên cuda cuda, bûye sedemek ku ji hev veqetin. Zêdetirî 4 sal in li Rojava rewşeke nû heye. Valahî li wê derê çêbû. Di vê valahiyê de rejîma Esad bi PYD'ê re hin tifaq avakirin û wê valahî dagire û rêgiriyê li pêşiya hemû hêzên welatparêz çêbike. Rejîma Sûriyê sîstemek ava kiriye ku hemû rê li hêzên siyasî girtiye û nahêle yekitî çêbibe. Bêgûman niha hêdî hêdî metirsiyek jî çêdibe ji ber ku rejîma Sûriyê demekê tengav bû, şer zêde bû, desthaltîyên cuda tê de çêbûn, rola hêzên derve û piştgiriyek xurt ji rejîmê re naçe di vê rewşê de careke din Sûriye û Tirkiye hevdîtinan dikin û têkiliyên wan çêdibin. Ev hemû nîşenêyên metirsiyê ne li ser Rojava. Dema ev pêk hat ez bawer nakim ku PYD bikare rêgiriyê li vê yekê bigire. Ji bo wê yekê divê bê gotin ku ewên berpirsyar û PYD û hêzên din yekitiyekê çêbikin. Çiqasî xelk dibêje PYD girêdayî rejîma Sûriyê ye, di bin banê wan de kar dike, lê gelek alî hene ji vê bawer nakin, ew aliyên ku hatine nav HSD ev hêzên hatine avakirin, çi ereb, tirkmen û yên din parçeyekî esasî ji wan girêdayî rejîmê ne. Yekitiyeke wan ya nêzikî rejîmê heye. Divê rê ji hemû hêzên re vekiriba. Lê niha ji sedî 70'ê hêzên kurdî derveyî vê hêzê ne. Lê tenê ew partiyên ku ji netewên din û di bin serkêşiya wan de ne di vir de cih digirin. Ji ber wê yekê ew bixwazin nexwazin mecbur in wan hêzan qebûl bikin. Lê hêzên din PYD qebûl bike jî rejîm wan qebûl nake û bo wan dibe metirsî ku bibe xalekî zextî li ber wan çêbike ku nikarin her hêzeke bi dilê wan be qebûl bike. Bi raya min kurd serkêşiyê bikin jî ne serbixwe ne. Siyaset û stratejiya van hêzan, li gor min di destê rejîmê de ye."

# Derbarê yekitiya siyasî çi gotin?

**Nivîskar Tengezar Marînî: Di ajandaya kurdî ya layanên ne li pêş e**

"Aya ji vê derfetê metirsîdar û hestiyartir heye? Ev rewş derfeteke jî ku kurd li xwe vegerin, ji dîroka xwe waneyan werbigirin û hêzên xwe bikin yek, da ku li ser mêzên dan û stendinê û li ser qadê qezenc bikin û rê li ber metirsiyan dadin. Çima nakin? Ev jî bebextiya me kurdan e, ku ajandeyên derve hinek hêzên kurdî bo xwe bikar tînin û ew hêz berjewendiyên demkurt yên xwe, di ser berjewendiya miletê xwe û welatê xwe Kurdistanê re digirin.

Ez dibînim çi kar îro ji yekîtiya kurdan girîngtir tune û yê astengan derbixe û rê li ber yekrêz û yekgirtinê bigire, dê ew bi xwe xwe bixe bin barê berpirsiyariya dîrokî û ji hêla nifşên bihên ve, bête reswaki-rin.

Pêdivî ye ev pirs ji wan bibe. Lê ez dikarim weha bibêjim: Ji bilî ku kurd dibêjin: 'Giyayê hewşê tehl e', lê ev bo min bi kêmanî diyar dibe, ku biryarên PYD ne ji ba wan tên û derdikevin. Dibe ji Qendîlê be û ji hêla din ve jî diyar dike, ku hêzên tarî û destên veşartî hene, dilivin û berjewendiyên hinek welatan pêk tînin. Mixabin, ev li def PKK û yên din feleka wê de digerin, ne tiştekî nû ye. Îran, roleke sereke di vî warî de dilîze, berê Sûriye û rejîma Saddam Hûsên jî û niha têkiliyen bihêz di gel Malîkî, Heşda Şabî Ez bi xwe dûr nabînim, ku destekî istixbaratê tirkan bi xwe di vê babetê hebe û nîşan, ev israra wan li dijî serxwe-bûna Kurdistanê, li Bakur jî, pêwendiyên wan bi hin hêzên çeprew, ku li dijî pirsa kurd in û nepejirandina têkiliyên di gel hêzên kurdî û daxuyaniyên yên wek Karasu û Cemîl Bayik û hin din. Bo PKK jî gelek girîng e têbigihin, ku trafîka Rojhilata Navîn û naverast a nû, di Hewlêrê re diçe û bi taybetî li nik Serokê Herêma Kurdistanê rêzdar Masûd Barzanî radiweste, guftûgoyan dike û birêve diçe. Ez dibêjim, ku ne wisa bûya, dê têkiliyên wan bi Başurê Kurdistanê re gelek başbûna, ji ber HRK çend kiriyar kirin, bo nimûne, çûna Peşmergeyan bo Kobanî."

**Rojnameger Ciwan Nebî: Heta Esad hebe yekîtî tûne ye**

"Hêzên kurdî nabin yek, bi sedema nakokiyên siyasî. Hemî kes vê di-zanin, lê em pirsê bi awayekî din bipirsin: Çima aliyên siyasî yên kurdî yekîtiyeke siyasî ava nakin? Çima hevrêziyeke siyasî ava nakin?

Em nema ji partiyên siyasî yên kurd dixwazin ku bibin yek, bi tenê em bang dikin ku hevrêziyekê li gel hev ava bikin, rawestin ji şerê hev û nerîneke hevrêz û yekrêz li ser doza me doza kurdî ava bikin, di nav de li ser hêzeke kurdî, ku hêza hemî kurdan be bêhtirî partiyekê, yan partiyeke din, bi du gotinan, ne bitenê partiyên siyasî sedema par-çebûna hêza kurdî ya leşkerî ne, ew, roj bi roj di bin sedema par-çebûna civaka kurdî bi tevayî.

Weke şopîner dibînim ku aliyên siyasî yên kurdî amade ne ku pêwendiyan bi hemî aliyên siyasî re bikin, li hemî cîhanê, her wiha amade ne pêwendiyên leşkerî jî bikin di şerê xwe de li dijî dagîrker û terorê, lê ne amade ne ku bi hev re pêwendiyê bikin. Ev vedigere kûrbûna par-çbûna siyasî di nav partiyan de, vedigere windabûna baweriyê, di encamê de mirovê kurd dibe qurbanî, doza kurdî, li her çar aliyên siyasî dibe qurbanî. TEV-DEM û ENKS ê hevdû napejirînin, li hev nakin. Ta aloziya Sûriyê bi giştî lidar be, ta rejîma Esad desthilatdar be wê pêkanîna peymaneke weke peymana Hewlêrê, yan Duhokê zehmet be, ta dostên kurdan di dijberiya Sûriyê de ev dost bin ku bêhtirî Esad li dijî maf û hêviyên kurdan derdikevin. Çima li hev dicivin ez nizanim, kesek jî nema dizane çima li hev dicivin."

**Rojnameger Fehim Işık: Di demek nêz de nayên gel hev**

Di demên dawîn de nêzîkbûna Tirkiyê ya ber bi Rûsyayê ve ku xuya dike wê di mijarên Mûsil û Sûriyê de dewam bike, dema mirov lê nêrî tê dîtin ku ev ji bo ku kurdan di hevsengiyêde bigire û li dij kurdan hatine çêkirin. Erdoğan hêj di destpêka qeyrana Sûriyê de dijayetiya kurdan û statuya wan ragihandibû. Niha jî di wê çarçovê de ber bi Sûriyê ve diçin. Armanca Tirkiyê ew e ku çeperê li dijî kurdan bihêz bike.

Ez ne di wê baweriyê de me ku hem ji ber pêwendiyên konjokturel, hem jî ji ber pêwendiyên di navbera kurdan de Rojava û Başûrê Kurdistanê bibin yek û herêm û rêveberiyeke hevbeş ava bikin. Di navbera herdû aliyan de hin arîşeyên ku hê jî nehatine çareserkirin hene. Lêbelê dîsa jî niah kurd di herêmê de û hem jî di qada navdewletî de xwedî rolekê ne û hatine qebûlkirin. Niha li Rojava federasyon û li Başurê Kurdistanê jî serxwebûn bi awayekî cidî tê niqaşkirin û wê ev mesele cihê xwe di rojeva hêzên navnetewî jî de cih bigire. Li herêmê piştî ku di derbarê DAIŞ'ê de gavên girîng hatin avêtin û asayîş li herêmê hat pêkanîn, li Rojava jî û li Başûr jî statuyên kurdan wê cihên xwe qayîm bikin û ez di wê baweriyê de me ku wê di vê mijara statuyên kurdan de jî gav werin avêtin. Helbet ev ê bandoreke erênî li ser pêwendiyên Ro-java û Başûr jî bike. Her wiha wê bandoreke cidî li ser Rojhilat û Bakurê Kurdistanê jî bike.

Hevdîtina Tirkiyê bi Esad re wê bandoreke mezin li ser Rojava pêk bîne. Piştî hevdîtinan, dibe ku Esad bi piştgiriya Tirkiyê midaxeleyî Rojava bike. Ji xwe armanc û mantiqa Tirkiyê jî ew e ku bes ku kurd nebin bila Esad hebe. Bi ya min Tirkiye ji bo ku kurd destkeftiyan bi dest nexin, wê ji serdemek demkî ya Esad re bibêje erê. Nêzîkbûna Tirkiyê ber bi Esad ve û egera midaxelekirina Rojava, dibe ku hêzên kurd nêzikî hevdû bike. Nêzîkbûna Tirkiyê û Esad wê pêwendiyên Tirkiye û ENKS'ê jî qût bike. Ji ber ku ENKS rejîmê weke dijmin dibîne û bawer nake ku bêyî çûna Esad qeyrana Sûriyê çareser bibe."

**Nivîskar Helîm Yûsif: Mesele ne PYD û ENKS ye, Qendîl û Hewlêr e**

"Ez ti partiyeke kurdan nas nakim ku berjewendiyên netewî yên hemû kurdan di ser berjewendiyên xwe re digre û ji bo rê li ber lihevhat-ineke netewî vebe berjewendiyên xwe yên rêxistinî dike qurban. Heta ku rewş bi vî rengî be, wê ti eniyeke yekbûyî yan jî yekîtiyeke kurdan çênebe. Berevajî wê, em dibînin roj bi roj nakokiyên di navbera hêzên kurdan yên sereke de zêde dibin û di vê derbarê de tiştekî ku mirov xweşbîn bike, li ber çavan nayê dîtin.

ENKS dibêje, 'Pêşmergeyên Roj girêdayî me ne.' Bi gotineke din hêza wan ya çekdar e. Ji aliyekî ve dibêje ku PYD û hêzên xwe yên çekdar ajan û xizmetkarên rêjîma Sûrî û Îranê ne û ji aliyê din ve jî dibêje çima rê nadin Pêşmergeyên Roj ku derbasî Rojava bibin. ENKS yan divê dev ji tawanbarkirina PYD û hêzên wê berde û wan wekî aliyekî kurd û berxwedêr bibîne û doza hevkariya bi wan re bike, wê gavê doza derbasbûna Pêşmergeyên Roj rewa dibe. Peymanên Duhok û Hewlêrê xwe dispêrin demeke derbasbûyî. Mesele hemû li Hewlêr û Qendîlê ye. Çiqasî Hewlêr û Qendîlê ji hev dûr bin, wê ENKS û TEVDEM jî ji hev dûr bin, çiqasî ji hev nêzîk bibin, wê herdû jî wisa ji hev nêzîk bibin. Di vê qonaxa ku em têre derbas dibin de, hem Hewlêr û hem jî Qendîl li hember berpirsiyariyeke dîrokî ne, eger ku li gor vê berpirsiyariya mezin tevnegerin, wê dîrok rehmê li wan neke."

**Nivîskar Jan Dost: Kiryarên PYD'ê birîna li Rojava kurtir dike**

"Milletê kurd li ser bingehek êlayetî û eşîrtîyê ava bûye. Hîn ew mîna netewekî yekgirtî nehatiye serhev. Kurd divê gelek gavên mezin bavêjin heta ku nakokiyên di nav xwe de bi kêmanî kêm bikin. Niha jî li Rojavayê Kurdistane nikarin bibin yek ji ber ku her beşek girêdayî eniyekê ye, Eniya PDK û ya PKK. Mixabin nakokiyên di navbera herdû partiyên Kurdistanî de gelek tahde li kurdên Rojavayê Kurdistanê kir. Ji ber ku PYD siyasetek netewî nameşîne û ji ber ku PYD biryara xwe ji cihên din distîne. Bi baweriya min, PYD nikare derveyî Qendîlê û Şamê anku rejîma Beşar tevbigere. Dilxwazên wan hebin jî lê biryar ne di destê wan de ye. A din propagandayek bêsînor û gewre li dijî te-refên din ji hêla ragihandina PYD de heye, ew yek birîn pirr kûrtir dike û nahêle zû bi zû ew û hêzên kurdî yên din bigihîjin hevdû.

ENKS mîna mirovekî jar û zeîf û bêtaqet e, tedawî jê re divê, hêz jê re divê. ENKS ji partiyên kurdî ên Sûriyê ava bûye, ew partî jî di tarîxa xwe de her lawaz bûn. Nakokiyên xwe û lawaziya xwe bi xwe re birin nav ENKS ê jî. Li aliyê din zexta mezin a PYD, faşîzma wê nahêle ku tevgerek demokratî li dar bikeve- PYD kesên ne pê re dikuje, direvîne, davêje zindanan. Tifinga xwe mîna qanûnê daniye nava meydanê. ENKS ne li dij e lê wek min got ew ji partiyên kurdî yên Sûriyê hatiye damezrandin. Ew partî jî îdolojiya şerê çekdarî li ba wan nebû, her li ser bingehek aştiyane, xebata rewa ya kolanê û guftûgoya îdolojiya wan e. Di roj û şevekê de nikarin xwe biguherin. Divê ew li ser vê meselê baş rawestin, eger bikaribin fikra bikaranîna şiddetê derbasî nav bîr û bawerî û felsefeya partiyên xwe bikin wê demê dikarin hêzekê jî ava bikin. Di despêkê de partiya Yekîtî hewldanek wisa kir, lê PYD ew tesfiye kirin."

**Rojnameger Faruk Hecî Mustafa: Xeletiyên herdû aliyan jî hene**

'Metirsî ew e ku ev nakokiyên kurdan dirêj bike. Û kurd ev keysê der-dê di demek ku kurd qonaxeke mihim dane. Dîrok dibêje ku kurdan tu caran li hev nekiriye. Carekê li hevkirin û ew jî gihiştin keyseke mezin li Başûrê Kurdistanê piştî 1990 û piştî 2003'an de. Lê mixabin ev dersa me kurdan kurden Kurdistana Sûriyê tu fayde ji nekir.

Mixabin destê Opozîsyona Sûriyê di nav nakokî û derketina pirsgirêkên me de heye. Rêjima Sûriyê mafên hemû kêmnetawan dabû, lê tenê yê kurdan nedabû. Çerkez, ermenî, sûryanî û aşûriyan bi zimanê xwe dixwendin û parlementerên wan hebûn û rewşa wan xweş bû di warê siyasî û çandî, civakî û aborî de. Lê kurd jî hemû tiştan mehrûm bûn ku dema hindik netewa jiyana xwe ya normal derbas dikirin, kurd diketine zindanên rejimê.

Kurd li Sûriyê xwedî dîrok û erd coxrafya ne. PYD çanda şirîkatiyê qebûl nake. PYD ne di zehmetî de û ne jî di rihetiyê de de qebûl nake.

Serok Barzanî tim li pişta wan e. û Dr. Hemîd Derbendî li pişt û kêleka wan e. Pir xizmet ji ENKS'ê re bûn. Heta Serok Barzanî Pêşmerge jî şandin Kobanê. Edî ji wan re çi bike? Yanî çek jî ji bo wan rêkirin. ENKS'ê nizane çi dike û çi dixwze! Ma ne şerm e ku yek wek Mechael Kilo dibêje, 'Tu caran hevbendî yên me kurd qala fedaraliyê û Kurdistana Sûriyê ne kirine?' Tiştê tewrî girîng di jiyana siyasî ya kurdan di Şoreşa Sûriyê de ew peymana Hewlêr û Duhokê ye. Erê neçû serî û PYD'ê jî qazanc kir, lê ew peymanê rihê nasnemeya Barzanî nuh ve ava kir li Kurditana Sûriyê. Û kêfa xelkê me bi cî hat. Rast e ev pey-man bi serî nebû lê tiştê herî giran û nikare kes inkar bike ew rola Serok Barzanî ye. Barzanî xwiya kir ku ew ya ezmanê kurda ye. Xema kurdan xwariye!"

**Prof. Dr. Ferhat İbrahim Seyder: PYD dûrî berjewendiyên netewî bûye**

"Li Kurdistana Sûriyê sê xetên siyasî hene. ENKS heye ku di nava wê de 15- 16 partî hene. PDKS, Partiya Wekhevî di nava wê de ne. Aliyê duyem PYD ye. Partiyên bi ser PYD'ê ji ve aliyên sêyem in. Li Hewlêrê li hev kombûn û komîteyek avakirin. Ew ê li gor wê komîteyê rêveberiya Kurdistana Sûriyê ji aliyê wan ve bihata birêve birin. Ew bi serneket. Dîsa rabûn û li Duhokê hevdîtin çêkirin û li wir hevdû dîtin. Dîsa gotinî 'em ê komîteyekê ava bikin û bi hevre kar bikin' ew jî pêk nehat. PYD'ê ew yek nedixwest. Gelek fakor hene. PYD'ê çima nexwest? PYD naxwaze ji bilî wê hêzeke çekdar ya kurdî bê Rojavayê Kurdistanê. Rejim û PYD û hikûmeta defakto naxwazin hêzeke rasteqîne hebe. PYD projeyeke taybet e. Öcalan di pirtûkên xwe de behsa konfederalîzma demokratîk û moderntîteya demokratîk dike. Dixwazin vê fikrê li ser partiyên nêzîkî xwe jî zal bikin.

Li aliyê din ve Pêşmergeyên Rojava li Kurdistanê şer dikin. Di bereyên herî li pêş in. Di her şerî de ew li pêş in. Ji bo Kurdistanê şer dikin. Hejmara wan 4-5 hezar e. Ew amadene derbasî Rojava bibin. PYD dibêje,'Pêşmerge werin Rojava wê şerê birakujiyê dubar bibe.' PYD wan naxwaze. Ji ber monopola PYD'ê nikarin werin. Ya ew yan neman. Hemû partiyên siyasî totalîter wisa ne."





# Kobanê û Efrîn nêzîkî hev bûn!



**Siwar Bedirxan**

Di Adara 2016'an de bi serkêşiya PYD'ê û TEVDEM'ê li Qamişlo ya Rojavayê Kurdistanê, Sîstema Demokratîk a Federal a Rojava-Bakûrê Sûriyê hatibû ragihandin. Meclîsa Damezrêner a Federal jî amadekariyên çêkirina destûrê bi dawî kiriye. PYD jî piştî ragihandina federayonê xebatên ji bo firehtirkirina xebatên dîplomasiyê dest bi hewldaneke nû dike. PYD ya ku heta niha li Rûsya, Komara Çek, Danîmarka, Fransa, Almanya Îsveç'ê ofîsan vekiribû dixwaze li çendîn welatên Yekîtiya Ewropa (YE) li Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê (DYA) jî nûnertiyan vebike. Li aliyê din Staffan de Mistura Nûnerê Netewên Yekbûyî (NY) yê Taybet yê Sûriyê jî aşkere kir ku ew û kurdên Rojava li ser çareserkirina qeyrana navxweyî ya Sûriyê di nava danûstendinê de ne.

Operasyona Menbîcê ya ku di 1'ê Hezîranê de destpêkiribû berdewam dike. Li gor çavkaniyên herêmî ji sedî 70'ê bajêr ji aliyê Hêzên Sûriyeya Demokratîk (HSD) hatiye kontrolkirin. Rayaderên kurd ê di derbarê rewşa dawî de zanyarî dan BasNûçe'yê eşkere dikin DAIŞ xelkê sivîl weke mertal bikartîne û sêdema pêşdeneçûna HSD'ê jî xetera li ser xelkê sivîl e.

Li aliyê din hat zanîn ku li DAIŞ ji bo ku têkçûna Menbîcê telafi bike, li Şahba û li Babê êrîşî gundên kurdan dike û bi sedan ciwanên kurd dîl girtîne da ku wan di şerê li dijî HSD'ê de bikartîne. Herwiha hamleya vekirina korîderekê di navbera Efrîn û Kobanê jî de berdewam dike. Tê zanîn ku HSD xwe nêzîkî Babê dike da ku korîdorekê di navbera herdu bajaran de vebike.

Hevseroka Meclîsa Zangonsaz a Efrînê, Hêvî Mistefa û rojnameger Mihemed Bilo geşedanên leşkerî û siyasî yên heremê ji BasNûçe'yê re vegotin.

**Hêvî Mistefa: DAİŞ sivîlan dîl digre**

Hevseroka Meclîsa Zagonsaz a Efrînê Hêvî Mistefaî di derê êrîşên DAIŞ'ê yên ser Şahba û Babê de ji BasNûçe'yê re axivî. Mistefa eşkere kir ku DAIŞ'ê bi dehan xortên kurd dîlgirtine û wan weke mertal bikartîne: "Ciwanên kurd yên ku dîlgirtine li hember HSD'yê dajon nav sengeran. Xelkê herêmê ber bi Efrînê ve koç dike. Bi hezaran kes tên Efrînê, Em amadekariya vekirina kampên nû dikin. Şertên mirovî ne di rewşeke baş de ne. Ji bo ku ev rewş çak bibe em hewl didin."

"Em ê Efrîn û Kobanê bigihînin hevdû"

Di berdewamiya axaftina xwe de Mistefa bal kişand ser Operasyona Menbîc û Babê jî û tekez kir ku li Efrînê jî amadakariyên leşkerî birêve diçin û amadekariyên vekirina korîdorekê di navbera Efrîn û Kobabê jî bi dawî bûne. Mistefa wiha pê de çû: "Li Efrînê jî amadekariyên leşkerî hene û berdewam dikin. Weke ku tê zanîn bi salan e em parastina xwe dikin. Em ê parastina rewa bidomînin. Ev xet ji bo me girîng e. Em ê Kobanê û Efrînê bigihînin hevdû. Me hemû amadekariyên xwe kirine. Hêza me tera wê yekê dike ku em ê hem xelkê xwe biparêzin û hem jî şerê DAIŞ'ê bikin. Hertim metirsiya DAIŞ'ê heye. Ji ber vê yekê em jî tedbîrên xwe distînin. Li Efrînê me parastina bajar û ewlehiya bajêr bi dawî kiriye. Hêzên me jî di amadebaşiyê de ne."

Hevseroka Meclîsa Zagonsaz Mistefa, di dirêjahiya axaftina xwe de, bal kişand ser xebatên çêkirina Destûra Meclîsa Damezrêner a Federasyonê jî û wiha got: "Di serî de sê kanton hebûn. Koordînasyona wan cuda bû. Lêbelê niha Şedadî, Girêspî, Şehba jî heye û ew ji destê DAIŞ'ê hatin xilaskirin. Wan jî xweseriya xwe ragihandiye. Pêdîvî li ser wê yekê hebû ku her sê kanton bigihên hevdû. Bi bangawaziya sê kantonan gelê me civîn pêk anîn û sîstema federal pesend kir. Hatina dawiya peymana pêkvejiyanê. Hevalên me li ser sîstema federaliyê kar dikin ew ê di demeke nêzde eşkere bikin.".

**Rojnameger Mihemed Bilo: Rewşa penaberên Menbîc, Heleb û Efrînê xirab e**

Rojnamger Mihemed Bilo ku li heremê geşedanên leşkerî dişopîne ji BasNûçe'yê re anî ziman ku zêdetir ji 2 hefte ye Menbîc hatiye dorpêçkirin û HSD'ê ji sedî heftê bajêr girtiye. Bilo anî ziman ku hin taxên mezin jî dî destê HSD'ê de ne û ji ber xelkê sivîl di nava bajêr de ne pêşde naçin û wiha berdewam kir: "Menbîc bêtirî 2 hefte ye bi temamî hatiye dorpêçkirin. Operasyon li çar aliyên bajêr dewam dikin. Pêşkeftinek heye. Bajêr bi xelkê sivîl dagirtiye. DAIŞ destûr nade ku sivîl ji bajêr derkevin. Ji ber wê yekê operasyon giran bi rêve biçe. HSD taxa El Hezayunê bidest xistiye. Operasyon giran birêve diçe. Gundê Ehrezê di bin destê HSD'ê de ye. Li derdora vî gundî li aliyekî hêzên rejîmê, li aliyekê DAIŞ û li aliyê din jî HSD heye. Ji Reqqa, ji bajarokên Helebê, ji bakûr heta Menbîcê gelek xelkê sivîl ji vê dojehê baz didin. Rojane 800-1500 kes derbasî deverên di bin kontrola HSD'ê dibin. Heta niha nêzikî 25 hezar kes ji herêmên DAIŞ'ê bazdan e û derbasî deverên HSD û Efrînê bûne. Lê ev hejmara mezin hemû li vê deverê namînin. Diçin Şam, Heleb û heremên di bin kontrola rêxistinên opozîsyonê. Hejmarek jî derbasî Tirkiyê dibin"

**Gundên Babê bên rizgarkirin rêya Efrîn û Kobanê vedibe**

Bilo da zanîn ku nêzîkî 60 hezar kurdên li Babê ji aliyê DAIŞ'ê ve hatine dorpêçkirin û DAIŞ ciwanên van gundan weke mertalên zindî di şer de bikartîne. Bilo amaje bi wê yekê jî kir ku metirsiya mezin li ser xelkê vê herêmê heye û wiha axivî: "Derdora 60 hezar kurd li devera Babê dorpêçkirîne. DAIŞ wan weke mertalên zindî bikar tîne. Zext û metirsî li ser xelkê herêmê heye. Gelek ji wan li çolan e. Hejmareke wan xwe rizgar kirin. Fermandarên HSD'ê radigihînin ku piştî Menbîcê ew ê berê xwe bidin gundewarên Babê û navenda Babê. Ji xwe dema gihiştîn gundewarên Babê kantonên Efrîn û Kobanê digîhijin hevdû."

Rojnameger Bilo tekez kir ku dorpêça li ser Efrînê berdewam dike, lêbelê şer û pevçûnên navbera YPG'ê û komên bi ser Artêşa Azad bi dawî bûye: "Meh û nîv e ku li herêma Efrînê rewş aram bûye. Di navbera YPG û komên girêdayî opozîsyona Sûriyê şer rawestiya ye. Beriya niha Efrîn dihat topbarankirin, şer hebû. Lê niha rewş aram e. Niha deriyekî nû hatiye vekirin. Rejîma Sûriyê gihîşt bajarê İdlib ku bajarekî Alewiyan e. Ew bajarok li ser sînorê Efrînê ye. Ji ber wê yekê rê niha di navbera Efrîn û deverên di bin destê rejîmê de heye. Ji xwe gelek xelkê vê deverê karmendên dewletê ne. Diçin mûçeyê xwe disîtin û karûbarên xwe dikin. Çûn û hatin heye. Pêdiviyên jiyanê jî di van riyan de derbas dibin."

# Hesabê YNK-Goranê ji Bexdayê vegeriya



**Hemîn Dildar**

Şandeya hevbeş ya Yekitiya Niştimaniya Kurdistanê (YNK) û Tevgera Goranê ku hefteya borî serdana Bexdayê kiribû, dest vala vegeriya. Tê ragihandin şandeya ku hewl da Hewlêrê baypas bike, ji hikûmeta Ebadî ji bo îdereya Silêmaniyê piştgiriyê xwestiye û diyarkirine ku ew amade ne petrola Kerkûkê bifiroşin Îranê û ligel Îranê rêkbikevin.

Lêbelê rayedarên Iraqî ragihandine ku karûbarên îdarî û yên petrolê di çarçoveya yasayan de pêk tên û Bexda van mijaran ligel Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) gotûbêj dike. Herwiha tê ragihandin ku Amerîkayê midaxele kiriye û ji Bexdayê xwestiye ku pêşniyarên şanda YNK û Goranê li ber çav negire û Ebadî jî teqez li dijî firotina petrolê ye bo Îranê û ji şandê re diyar kiriye ku ew li dijî dubendiya herêmî li Kurdistanê ne.

Tê ragihandin ku rayedarên Bexda ji şanda YNK û Goranê xwestine ku li gel Partiya Demokrata Kurdistanê (PDK) rêkbikevin û dûrî dubendiya herêmî bisekinin. Serokê Hevpeymana Mutehîden ya Iraqê Usame Nuceyfî ji şanda YNK-Goranê re pêşniyara 'Bi yekdengiya li gel PDK'ê û bi awayekî hevgirtî, bi Hikûmeta Iraqê re bicivin' kiriye.

Li hêla din rêkeftina Goran û YNK'ê ku di meha Gulanê de hatibû îmzekirin, ji aliyê rêxistinên sivîl û partiyên RHK'ê ve piştgirî neditibû û ev yek jî weke sedemeke vala derxistina planan hate şîrovekirin. Pisporan li ser kiryarên YNK û Goranê radigihînin ku herdû partî hewl didin bi piştgiriya Îranê zorê bidin PDK'ê û dubendiyekê di herêmê de ava bikin.

Daxuyaniya Parêzgerê Kerkûkê Necmedîn Kerîm ya 'Divê Kerkûk bibe herêmeke serbixwe' jî di vê çarçoveya stratejiya dubendiya herêmî û siyaseta petrolê ya YNK û Goranê de tê nirxandin.

Li aliyê din piştgiriya Hevpeymaniya Navdewletî ya bo Hêzên Pêşmerge berdewam dike. Hat zanîn ku DYA ku serkêşiya hevpeymanê dike, wê 200 milyon dolar alîkariyê bide Hêzên Pêşmerge. Heft borî li Bexdayê di navbera Wezîrê Darayî Hoşyar Zebarî û Balyozê DYA yê Bexdayê de li ser vê mijarê peymanek hat îmzekirin. Hikûmeta Bexdayê jî temînat daye ku wê ji vê parê 200 milyon dolaran ji Hêzên Pêşmerge re bişîne.

Herwiha hat zanîn ku ji bilî DYA'yê Îngîltere jî wê ji Hêzên Pêşmerge re çek û cebilxane bişîne. Wezîrê Bergiriyê yê Îngîltereyê Michael Fallon ragihand ku hikûmetê biryara milyonek û 400 hezar pound alîkariya leşkerî daye ji bo Hêzên Pêşmerge.

**Dr. Osman: Barzanî dibêje serxwebûn, ew diçin Bexdayê**

Niqaşên serdana şanda YNK-Goranê ya Bexdayê di nav korîdorên siyaseta Başûr de didome. Siyasetmedarê kurd Dr. Mahmud Osman ku serdana şanda YNK-Goranê ji BasNûçe'yê re nirxand, diyar kir ku YNK û Goran ji dîtin û şîrovekirina rewşa herêma Kurdistanê dûr in. Osman eşkere kir ku divê partiyên siyasî piştgiriyê bidin banga Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ya bo referandûma serwebûnê û wiha axivî: "Diviya bû di rewşeke wiha de Goran-YNK ne çûbûna Bexdayê. Xelkê Kurdistanê di rewşeke dijwar de ye, partiyek ku vê rewşê bibîne û bifikire nema ye. Mixabin partiyeke ku bo Kurdistanê siyasetê dike nema ye. Yek diçe Bexdayê û ya din bi karekî din mijûl e. Barzanî qala serxwebûnê dike, ew diçin Bexdayê. Li cihê ku bo referandûmê kar bikin, li pey lêgerînên din in."

Dr. Osman radigihîne ku divê demildest hemû partiyên kurd bo referadûmê kar bikin û wiha daxive: "Têkoşînek heye li dijî DAIŞ'ê, pêwendî bi Bexdayê re xerab in, xelk perîşan e divê partiyên siyasî vê bînin rojeva xwe" û dibêje ku divê partiyên siyasî fersendên heyî yê ji bo referandûmê ji dest bernedin.

**Mihemed Haci: Goran, bi derbasbûna nav YNK'ê têkçûna xwe îlan kir**

Rêkeftina YNK û Goranê ku di meha Gulanê de îmzekiribûn, di nava herdû partiyan de jî tê niqaşkirin. Piştî rêkeftinê hin endamên polîtburoyên herdû partiyan jî partiyên xwe veqetiyabûn. Berpirsê kevn yê Pêwendiyên Siyasî yê Goranê Mihemed Heci ku ji partiya xwe veqetiya bû ji BasNûçe'yê re axivî û daxuyand ku hevkariya Goran û YNK'ê wê partiyên siyasî teng bike. Hecî dibêje Goran marjînal bûye û bi rêkeftina ligel YNK'ê têkçûna xwe anî. Hecî li ser helwest û weşana tund a medya Goranê ya li dijî siyasetmaderên RHK'ê jî got, "Medya Goran herkesê dike armanc. Li dijî herkesê şêwazekî êrişkar bikar tîne. Dema ku ez di nav Goranê de bûm, li gor wan ez şoreşger bûm. Lê dema ku ji wan veqetiyam, ez rastî kampanyaya reşkirin û gefan hatim." Mihemed Hecî piştî ku ji Goranê veqetiya derbasî PDK'ê bûbû.

**Şiwad Dawidî: Em ê bi PDK'ê re berdewam bin**

Şanda hevbeş ya Goran-YNK'ê ku hefteya derbasbûyî serdana Bexdayê kiribû û hin hevdîtin pêka anî bû, vegeriya Kurdistanê. Şandeya ku li Bexdayê hin hevdîtin pêk anî, vegeriya Silêmaniyê. Parlamenterê YNK'ê Şiwad Dawidî ku endamê şanda hevbeş bû, derbarê serdana şandê ji BasNews'ê re nirxand. Dawidî got, "Şanda ku çû Bexdayê bo agahdarkirina naveroka rêkeftina YNK-Goranê hin hevdîtin pêk anî. Tu alî ne li dij naveroka rêkeftinê ne." Dawidî herwiha diyar kir: "Me di hevdîtinên xwe yên ligel rayedarên Iraqî ji wan re ragihand ku rêkeftin ji berjewendiya xelkê Kurdistanê de ye." Şiwad Dawidî got ku ew dixwazin siyaseta xwe bi PDK'ê re berdewam bikin û destnîşan kir ku PDK aktoreki giring yê RHK'ê ye û axaftina xwe wiha domand: "Em ji PDK'ê venagerin. Divê PDK ji bo diyaloga hemû mijaran deriyên xwe veke. Bêyî PDK'ê siyaset nabe. PDK hêzêke bi bandor eli Herêma Kurdistanê. Teqez divê em bi wan re bên ba hev."

**Mihemed Huseyîn: Hêviyên YNK-Goranê ji Bexdayê vala derketin**

Rojnameger-Nivîskar Mihemed Huseyîn jî derbarê serdana şanda YNK-Goranê ji BasNûçe'yê re axivî. Huseyîn diyar dike ku YNK û Goranê ya ku ji Bexdayê hêvî dikir, nedîtin û Bexdayê jî ji wan re ragihand ku ew ji bo çareserkirina arîşeyan paytexta Kurdistanê Hewlêrê weke muxatab qebûl dike û alîgirê hevdîtinên bi Hewlêrê re ye. Huseyîn got ku YNK û Goran bi ajandayên taybet çûn Bexdayê û wiha axivî: "YNK-Goran jibo çêkirina dubendiya herêmî, pêkanîna rêkeftinên petrolê bi hikûmeta Bexdayê re û şandina petrolê bo Îranê çûn Bexdayê. Bexda ji şanda herdû partiyan re dibêje; 'Muxatabê min Hewlêr e û gaveke ne qanûnî ku rewşa Kurdistan û Iraqê têxe bin metirsiyê nakim.' Hêviyên wan bicih nehatin. Hewldanên ku piştgiriyê ji gel wernegire û tenê ji bo berjewendiyên partiyê tên kirin, wiha bi encam dibin."

Serdanên şanda Goran-YNK ku bo baypasskirina Hewlêrê hewl didin bi hikûmeta Ebadî re lihevbikin, di rojeva RHK'ê bû. Şanda hevbeş ji hikûmeta Ebadî naskirina rêveberiya Silêmaniyê xwestiye û daxwaza rêkeftineke petrolê kiriye. Lêbelê ev daxwaz û pêşniyarên Goran û YNK'ê ji aliyê hikûmetê ve hatin redkirin.

Herwiha Huseyîn ragihand ku rêkeftina stratejîk ya di herdû aliyan ji aliyê derdorên siyasî ve piştgirî nedît û got ku derdroên îslamî û çepgir sist nêzîkî vê peymanê dibin.

**Pêşmerge Sado Malko: Êrişên DAIŞ'ê hatin pûçkirin**

DAIŞ a ku piştî operasyona Pêşmerge ya Xazirê şikestinek mezin xweribû û ji Kurdistanê hatibû dur xistin, di nava hefteyekê de li Şengalê hewl da ku êrişî çeperên Pêşmerge bike. Jêderin Pêşmerge ragihandin ku DAIŞ'ê bi çekên giran hewl da ku êrişî bereyên Pêşmerge bike, lêbelê Hêzên Pêşmerge hewldanên DAIŞ'ê vala derxistin û DAIŞ ji herêmê hate dûr xistin.

Berpirsê Pêşmerge yê Êzdî Sado Malko, di derbarê êrişên DAIŞ'ê de agahî dan BasNûçe'yê. Malko ragihand ku DAIŞ'ê bi maşîneyên bombebarkirî û topên hawanan êrişî Pêşmerge kir û piştî pevçûnên dijwar ku 2 setan dom kir, êrişa DAIŞ'ê hat têkbirin. Malko herwiha got ku balafirên hevpeyman jî piştgirî dan Pêşmerge û 4 maşîneyên DAIŞ'ê hatin rûxandin û 6 endamên DAIŞ'ê hatin kuştin. Pêşmergeyê Fermandar eşkere kir ku hêza DAIŞ'ê ya şer nemaye û wiha axivî: "Piştî operasyona Xazirê ya dawîn û têkçûna wan ya li Fellûcê DAIŞ gelek qels û biçûk bû. Bi êrişa ser Pêşmerge dixwazin moral bibînin. Êrişên dawîn jî bi berxwedana Pêşmerge hatin têkbirin. Pêşmerge wek her demî di çeperan de amade bû û êrişa DAIŞ'ê ya li dijî Şengalê jî têk bir."

**Barzanî serketina Fellûcê pîroz kir**

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî piştî kontrolkirina Fellûcê ku girêdayî abajarê Enbarê ye, Serokwezîrê Iraqê Heyder Ebadî pîroz kir.

Li gor daxuyaniya ku ji malpera Serokatiya Herêma Kurdistanê hate kirin, Barzanî bi rêya telefonê Ebadî geriyaye û ji ber bidestxistina Fellûcê xelkê Iraqê pîroz kiriye û kêfxweşiya xwe aniye ziman. Herwiha di hevdîtina Barzanî û Ebadî de hevkariya RHK û Iraqê ya li dij DAIŞ'ê dîsa hatiye destnîşankirin. Operasyona rizgarkirina Fellûcê ku sala 2014'an ketibû destê DAIŞ'ê 23'ê Gulanê destpêkiribû. 20 hezar polîs û nêzî 10 milîs beşdarî operasyonê bûbûn. Artêşa Iraqê ku hefteya borî beşeke mazin ya bajar kontrol kiribû, di nava hefteyê de ragihandin ku wan bajar bi temamî bidest xistine.

# Barzanî: Şer ji bo Bakûr wêranî ye

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî di nava hefteyê de şanda ku ji Serokê Giştî yê PSK'ê Mesûd Tek, rêveberên partiyê Alaattin Aras, Kurbani Demir, Hacı Hasan û Veli Koparan pêk dihat pêşwazî kir. Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî pêşwaziya şanda PSK'ê kir. Şanda PSK'ê derbarê şerê Bakur de nîgeraniya xwe anîye ziman û di derbarê derbasbûna proseya siyaseta legal Barzanî agahdar kir. Barzanî xemgîniya xwe ji bo şerên li bajarên kurdan ragihand û diyar kir ku divê siyaseteke aqilane ya serwer bê meşandin. Barzanî got ji bo parastina canê xelkê sivîl û aramiyê seaeteke axaftinê ji 10 salên bi şer baştir e.

**Barzani pêşwaziya Senator Casini kir**

Serokê RHK'ê Barzanî di nava hefteyê de nûnerên welatên gelek welatan pêşwazî kir. Hat ragihandin ku Barzanî li li ofîsa serokatiyê ya li navçeya Pîrmam ya Hewlêrê Serokê Komîteya Pêwendiyên Derve yê Senatoya Îtalyayê Pier Ferdinando Casini û şanda pê re pêşwazî kir. Casini ji ber pêşwaziya Barzanî û wêrekiya Hêzên Pêşmerge ya li dijî DAIŞ'ê spasî û pîrozbahiyên xwe anî ziman û balkişand li ser wê yekê ku Pêşmerge li şerê dijî terorîstan da li hizra gelê Îtalya de wekî fîryadek hatiye wênekirin. Eve jî xisterû ku gelek raziye li asta hemahengiya di navbera hêzên welatê xwe û hêzên Pêşmerge de, bi taybetî ji bo parastina Bendava Mûsil û tekez li berdewamiya piştevaniya welatê xwe ji bo gelê Kurdistanê kir.

Barzanî jî di hevdîtinê de li ser gefa rêxistinên tundrew yên li ser mirovahî û xwezayê û têkoşîna Pêşmerge ya li dijî DAIŞ'ê rawestiya. Serokê RHK'ê ragihand ku DAIŞ bûye sedema drameke mirovî û anî ziman ku Herêma Kurdistanê ket bin barekî giran yê dayarî jî û herwiha got ku Bexda di derbarê 2 milyon û 800 hezar penaberên ku xwe spartin Kurdistanê de xemsar e.

**Macaristan: Pêşeroja gelê Kurdistanê ronî ye**

Barzanî, di nav heftê de Balyozê Macarîstanê li Iraqê Tibor Szatmari ku dawî li erka wî hatiye qebûl kir. Di daxuyaniya ku ji Serokatiya Herêma Kurdistanê hatiye kirin de hat gotin ku Tibor Szatmari ji bo malavayî û xatirxwestinê serdana Barzanî kiriye, silavên Serok û Serokwezîrê Macarîstanê bi Barzanî gihandiye û xweşhaliya xwe bi berev pêşveçûna peywendiyên di navbera Herêma Kurdistan û welatê xwe de nîşandaye û ragihandiye ku bingeheke bi hêz ya dostayetî û peywendiya di warê dîplomasî û serbazî û aborî di asta bilind a her dû aliyan da pêkhatiye. Balyozê macarî balkişandiye ser dîrok û xebata gelê xwe û gotiye ku nêzîkbûneke zêde li navbera têkoşîn û xebata gelê Kurdistanê û gelê Macarîstanê de heye. Balyozê Macarîstanê balkişandiye ser rola Barzanî ya li serkirdayetîkirina gelê Kurdistanê û şerê li dijî DAIŞ'ê de û tekez jî li berdewamiya piştevaniya welatê xwe ya ji bo gelê Kurdistanê kir û wê yekê xisterû ku gelek geşbîne bi paşaroja gelê Kurdistanê li navçeyê da.

**Barzanî êrişa balafrigeha Stenbolê şermezar kir**

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî di nava hefteyê de li ser êrişa DAIŞ'ê ya li dijî Balafirgeha Atatürk ya Stenbolê peyamek belav kir û êriş şermezar kir. Barzanî got, "teror li dijî hemû mirovayetî, azadî û pêkvejiyanê gef e." Barzanî serxweşî li gelê Tirkiyê d û hêviya başbûnê ji kes û karên birîndaran re xwest. Barzanî di peyama xwe de cij da van hevokan: "Teror gefeke ciddiye li ser hemû mirovayetiyê û dijî azadî û bexteweri û pêkvejiyane, rûbirûbûna vê diyardeya tirsnak hewlekî cîddî û hemû aliyaneya civaka navdewletî pêwîst e."





## Dr. Kamal Sido:

# Divê PDK û PKK êdî bi hevûdin re biaxivin!

"Kurd hêj ne gihiştine kenara asayîşa aramiyê. Kêştiya wan di nav deryayekî de ye, pêşketin heye lê wê li kuderê peya bibin em nizanin. Wexta ku li hevdû bikin hevkariya hevdû bikin, ka em ê binhêrin Îran û Rûsya li hev dikin, Tirkiye û Rûsya li hev dikin, kurd jî dikarin li hev bikin. Çima PKK û PDK bi hev û din re neaxivin? Gerek êdî nêzîkê hev bibin."

M. Salih Bedirxan

Serokê Komeleya Parastina Mafê Kêmnetewên Cihanê Dr. Kamal Sido di derbarê nakokî û rikberiya PYD'ê û ENKS'ê de ji BasNûçe'yê re axivî. Sido eşkere dike ku divê alî li ser berjewendiyên hevbeş lihev bikin û danûstendinê bi hevre deynin.

**Îro bereyên ku ENKS'ê û TEVDEM'ê xwe nêzîkî wan kiribû li hev dicivin û danûstendina dikin. Ew çima li hev nakin û her ku diçe nakokiyên di navber wan de kurtir dibe?**

Meseleya yekbûna partiyên Rojavayê Kurdistanê beriya hemû tiştî girêdayî Partiya Demokrata Kurdistana Iraqê (PDK) û Partiya Karkerên Kurdistanê (PKK) ve yê. Mesele ne Encûmena Niştimaniya Kurd li Sûriyê (ENKS) û Tevgera Civaka Demokratîk (TEVDEM) e. Divê PDK û PKK li hev bikin û arîşeyên di navbera xwe de çareser bikin. Dema arîşe û nakokiyên di navbera aliyan de kêm bibin û nemînin wê problem di navbera ENKS'ê û PYD'ê jî de nemînin. Şaşitiyên herdu aliyan jî hene. Şaşîtiyên ENKS'ê jî, şaşîtiyên PYD'ê jî hene. Lê nakokiyên serekî di navbera PDK û PKK'ê de hene.

Peywendiyên baş di navbera PDK'ê û Tirkiyê de hene. Tirkiye naxwaze ENKS û PYD-TEVDEM nêzîkî hevdu bibin. Heta ji arîşeya kurd re li Bakurê Kurdistanê çareyek neyê dîtîn ew ê rikberiya di navbera aliyên kurd de li Rojavayê Kurdistanê berdewam bike. Rikberiya tund di navbera PKK'ê û PDK'ê de heye. Ez bawer nakim ku di demeke nêzde ev çareserî pêk were.

PDK ji aliyekî ve mecbûrê Tirkiyeyê ye. Tirkiye jî wê rê nede PDK û wê pêywendiyên xwe baş bike bi PKK'ê re. Ji ber ku mesele girîng e. Erdoğan anha ji dewleteke weke Rûsya re tenazûl dike, ji Îsraîl re tenazûl dike. Îhtîmale ku sibê ji Beşar Esad re tenezûl bike ji bo ku PKK û kurdên Bakur xûrt nebin. Ji PDK tê xwestin li gor wê rewşê helwesta xwe biguherîne. Ew nakokiyên ku dom dikin ji aliyê PKK destpê bike. Divê li bendê nemînin ku PDK helwesta xwe biguherîne. Gelek zehmet e ku PDK helwesta xwe gelek biguherîne. PDK dikare ji aliyê xwe de hinek tiştan bike ji bo ku rewş aram bibe.

**Li Rojava rewşeka aloz heye xelk berê xwe didin deryayan ma vê yekê nabînin?**

Weke ku min got ew girêdayê PDK'e. Çavê PDK jî li Tirkiye yê li Hikumeta AKP'ê ye, wexta ku Erdoğan ne razî be ez bawer nakim PDK nikarê tiştekî bike.

Li aliyê din di navbera PYD û rejima Surî de berjewendiyên hevbeş hene. Ji ber ku rejima Sûriyê heta seeta îro li dijî siyaseta Tirkiyeyê ye, li dijî îslamcîya ye, ev armanca xelkê kurde jî li Sûriyê, xelkê kurd jî bi ne siyaseta Tirkiyeyê qebûl dike ne jî îslamciya qebûl dike

**ENKS çima bihêztir nabe û çalakiyên wê tesîreke mezin çê nakin?**

Wekî ku min got ENKS tiştên gelek zehmet dixwaze. Ji PYD'ê dixwaze arteşeke taybet ava bike dixwaze ku grubên îslamî derbasê heremê kurdan bikin. Dixwaze ku îdare nemîne. Lewma jî min got divê PYD ji aliyê xwe ve wek çawa li Bakurê Kurdistanê PKK ji aliyê xwe ve agirbestên yek alî îlan dike. Divê li Sûriye jî îdare neçê ser alîgirên ENKS'ê çi dikin bila bikin. Meşa dikin, çi dikin bila bikin divê îdare bûna xwe fireh bike ku heta ew xwe biguherînin. Ew helwesta xwe ne guherînin ji ber ku heta ku Tirkiye dijminatiya îdarê dike ew ê jî dijberiya aliyan kurdan bikin. Ez hêvî dikim ku PDK û birêz Mesûd Barzanî piştî ku Erdoğan helwestên xwe gelek guhertin di meseleya Sûriyê de ligel Rûsya ew jî hinekî li helwesta xwe temaşe bikin û hewlbidin ku kêşeyên nav kurdan çi li Başûr çi li Rojava çareser bikin. Wexta wisa bibe mimkûn e ENKS-PYD lihev bikin.

**ENKS zêdetir li dervayê welat e û dîplomasiyê dike, bi wê hewldanê ewê ENKS çi bike? Çi armanc dike?**

ENKS dikaribû karên lobiyan bikira. Ji bona rojên pêş xwe amade bikira, bês ENKS piraniya wextê xwe li dijî PYD'ê yê em bêjin li wir li Ewrûpa dibejin, 'DAIŞ û YPG yek in yek rêxistin in, PYD û DAIŞ yek tişt in.' Yanî piraniya karê wan tiştên wiha ye. Lewma jî xelkê kurd roj bi roj ji wan aciz dibe. Ev problemekê mezin e. Di heman demê de jî PYD tê lîstika wan, alîgirê wan li Sûriyê digre, dixe girtîgehê, ew jî problema bêtir kûr dike. Ji aliyê me pêşniyar, bila PYD bêhna xwe fire bike, dev ji girtinan berde. Çi dikin bila bikin. Bila hevkariya Tirkiyê bikin, 'bila bêjin YPG, DAIŞ'e' lê bila wan negrin, heta ku ji ber fikrên siyasî, heta ku çekan ranekin bila dest navêjin wan. Ji ber ku helwesta wan wê neyê guhertin ku heta helwesta dewleta Tirkiyê neyê guhartin. Problem di wir de ye û gelekî mezin e.

**PYD çima xwe nêzîkî ereb tirkmen û sûryaniyan dike û xwe nêzîkî ENKS'ê nake? Herwiha çima xwe nêzîkî Başûrê Kurdistanê nake?**

Li Başûrê Kurdistanê, dive em behsa beşekî wê derê bikin. Behsa PDK bikin. Peywendiyên baş hene li gel YNK'ê, li gel Goranê li gel piraniya xelkê Başûrê Kurdistanê, Rapirsîneke Dengê Amerîka hebû jî % 97 xelkê Başûrê Kurdistanê piştgiriya kurdên Rojava û YPG'ê dikin. Ev rapirsîn heye. PDK qebûl nakê ligel PYD'ê kar bike ji ber ku Tirkiye aciz bibe. Amerîka çiqas mezîn e ditirse ligel PYD'ê tiştekî bikin ku Tirkiye aciz nebe. Piştî gelek problem çêbûn heta ku destpê kir. PDK ditirse ku Tirkiye probleman çêbike, sînor bigre, ditirse ku Tirkiye alîkariya wan neke. Dibe neftê ji wan nekire, gelek probleman ji wan re çê bike. PYD dixwaze li gel PDK'ê bikê, lê PDK naxwaze, ji ber ku ji Tirkiye ditirse.

PYD ligel pêkhateyên li Sûriyê hêzên leşkerî ava dike û hemû pêkhateyên Sûriyê tê de beşdarin. Çima hebûna Pêşmergeyên Roj qebûl nake û nahêle ew vegerin?

Pêşmergeyên Rojava divê vegerin lê beriya wê divê îttîfaqê bikin. Wexta îttîfak çênebe wê şerê navxwe çêbibe. Wexta ku îttîfak tûnebe, niha ENKS dibeje 'YPG û DAIŞ aynî tişt in.' Ma Pêşmergeyên Rojava li ser wê esasê wê çi bikin? Wê şerê hev û din bikin? Wexta ku aliyê siyasî ku ENKS dibêje, 'DAIŞ, PYD û YPG yek in.' Eger Pêşmergeyên Rojava girêdayê ENKS'ê bin. Di vê konaxê de wê çi bibe? Ew ê şer derkeve. Dive îttîfaq çêbibe û vegerin, bê îttîfaq wê şer çê bibe.

**PYD hevditinên ligel ENKS'ê bike û bereyeke kurd a bi hêz ava bike baş e an jî bi êşîrên êreb re û bi pêkhateyên din yên li Sûriyê re danûsendinê bike baş e?**

Helbet li gel kurdan be baş e. ENKS naxwaze, ji ber ku ENKS berjewendiyê xwe tê de nabîne. Ew êrebên tu behs dikî, şerê DAIŞ'ê dikin, xweseriyê nas dikin. Lê ENKS dibêje; 'ez xweseriyê nas nakim, ez PYD'ê nas nakim, ez dikarim bi PYD'ê re parvekim.' Parvekirin jî ne çareye ji ber ku sibe ew ê şerê hevdu bikin. Lê ew hêzên ereb, asûrî û sûryanî xweseriyê nas dikin. Di bin ala xweseriyê de kar dikin.

**ENKS'ê ne çima hewcedarî bi avakirina hêzeke leşkerî dît?**

Ez bawer nakim ku ENKS bi xwe be. Ji ber ku ew tenê hincet in. Biryara Pêşmergeyên Rojava ne di destê ENKS'ê de ye, di destê birêz Mesûd Barzanî de ye ew niha li wir in. Pereyên wan alîkariya wan yên PDK'nê. Ez bawer nakim ku Kek Mesûd Barzanî wan derbasî Rojava bike. Derbaskirina hêzeke çekdarî nav Sûriyê ne karekî hêsan e, pirsên navdewletî hene û pirsên nav kurdan jî divê bên çareserkirin. Em carek din bêjin wexta ku şer çêbibe di nava YPG'ê û alîgirên ENKS'ê de ew dem ew ê şer derbasî Başûr jî bibe. Lewma jî di destpêkê de divê îttîfaq çê bibe ku îttîfaq çêbû û dûre berjewendiyên giştî hebin. Wexta ku ew bêjin 'YPG û DAIŞ wek hevûdîne' ew dem ez ê bêm şerê kê bikim? Ez ê şerê hem YPG'ê bikim û hem jî yê DAIŞ'ê bikim. Ev problemek e.



Meseleya yekbûna partiyên Rojavayê Kurdistanê beriya hemû tiştî girêdayî PDK û PKK ve yê. Mesele ne ENKS û TEVDEM e. Divê PDK û PKK li hev bikin û arîşeyên di navbera xwe de çareser bikin. Dema arîşe û nakokiyên di navbera aliyan de kêm bibin û nemînin wê problem di navbera ENKS'ê û PYD'ê jî de nemînin.

**Ji danûstendinên aliyan yên 2012'an li Hewlêrê herwiha 2014'an li Duhokê çima encamek nehat bidestxistin û Komîteya Rêveber nikarîbû xalên rêkeftina aliyan birêve bibe?**

Wexta ku desteya bilind ava bû, hê şandeyên kurdan li Hewlêrê bûn, di heman demê de Davutoğlu hat Hewlêrê ji aliyê ENKS'ê re got, 'nabe hûn alîkariya desteya PYD'ê bikin' eşkere ji wan re got. Ez bi endemên Desteya Bilind re axivîm. Şahid im ji min re gotin 'di eynî rojê de Davutoğlu li wir bû.' Dû re dema ku bi hevûdin re kar kirin piraniya denga bi Desteya Bilind de 10 bûn gelek caran 8/2 bûn. Di gelek helwestên siyasî de piştgiriya PYD'ê dikirin, rabûn Desteya Bilind xira kirin. Ya Tirkiye razî nebû, ya din jî piraniya dengan li aliyê ENKS'ê çênebû. Lewma jî Partiya Pêşvero jî ji ENKS'ê derket û dû re partiya El Wahdi ya Şêx Alî qewitandin.

**PYD rêvebirên ENKS'ê digre û zindanî dike û îşkence dike. ENKS jî derdikeve kolanan û daxuyaniyan belav dike. Ew ê ev yek çiqasî berdewam bike?**

Eger Amerika biryarê bide, dikare her dû aliyan nêzik bike. Lê tirsa Amerîka jî Tirkiyê ye. Kîlît Tirkiye ye, ji ber ku Amerîka ditirse, niha Amerîka alîkariya Efrînê nake, ji ber ku Tirkiye derbas dike. Lewma Rûsya li wî aliyî alîkariya kurdan dike. Tirkiye dibeje; 'Nabe!' Wexta ku Amerîka, Rûsya Tirkiyeyê aciz dike dikare her dû aliya bigihîne hevdu. Dikarin hêzeke hevbeş wek Pêşmergeyên Rojava, eger hatina wan ji bo Rojava hebe, ji ber ku mirov heta niha nizane ew Pêşmergeyên Rojava çend in ku ne tenê axaftin li serê tê kirin. Ew Pêşmergeyên Rojava dikarin bibin beşek ji artêşeke giştî li hev û din bikin bi navekî din. Yan bi navê YPG'ê yan bi navê Pêşmergeyên Rojava bi çi navî dibe. Lê bi erkeke giştî bi serokatiyeke giştî ya Amerîka dikare zextê li wan bike. Lê Amerîka wî karî nake ku hê Tirkiye razî ne bûye. Niha em li bendê ne. Gelo niha wê Tirkiye helwesta xwe çawa biguherîne? Gelo wê li gel Pûtîn kar bike? Îhtîmal e Tirkiye sibê li gel rejîmê jî kar bike.

Ez hêvî dikim ku demekî nêz de peywendiyên wan baş bibin. Ji ber ku ew bi hevdu re neaxivin. Ez û te dikarin biaxivin, lê ew silavê jî li hevdu nakin. Mirovên ku silavê li hevdu nekin, nikarin li hevdû jî werin. Deriyê Simelka jî divê ji sedî sed were vekirin. Xelk dema ku derbas dibin ne li qeyikê, rêya êrebê heye, pir heye ku mirov derbas bibin. Lê rê ji sedî sed nehatiyê vekirin. Îhtimala ku sibê were girtin jî heye. Baş bû ku vekirin. Divê diyaloga wan hebe, ez pêşniyar dikim, diyaloga wan hebe û silavê bidin hevdu. PYD'ê jî li aliyê xwe de çawa ku PKK'ê li Bakur, agirbestê yek alî îlan dikir. PYD jî li Suriyê de ji aliyê xwe de heman tiştî bike. Ji alî xwe de divê îdare ya xweser li Qamişlo, li Efrînê, li Kobanê dest nedine wan. Di aliyê siyasî de çi dikin bila bikin. Lê tenê di aliyê leşkerî de çeka ranekin, bi hêzên îslamî re hevkariyekî aşkere nekin. Di siyasetê çi dikin bila bikin.

**Hîn jî PYD-YPG û Rûsya bi hev re kar dikin?**

Di meseleyê leşkerî de Amerîka û PYD nêzîkî hevdû ne û heta meseleyên siyasî de. Îro leşkerên Amerîkî, leşkerên Fransa di sengeran de bi hevdû re li gel PYD'ê li gel PKK'ê kar dikin.

**Yanî li Efrînê Rûsya û YPG'ê ne di hevkariyê de ne ?**

Li Efrînê rewş cûda ye, li wê derê sedema ku Amerîka jî ji Tirkiyeyê ditirsê. Lewma li Efrînê Rûsya piştgiriya esmanî dide ji bo ku Efrînê negrin, ew jî ne tiştekî xirab e. Firokeyên Rûsya rê nadin DAIŞ'ê, El Nûsrayê ku zarok û keç û kûrên me li Efrînê bikujin û milyonek penaber li wê derê bikujin. Ma ew tiştekî xirab e? Ji aliyekî din ve, wexta ku Amerîka dît wisa ye, ew jî mecbûr ma derbasî Minbicê bû, derbasî Raqqayê nebû. Îhtîmal heye Minbîc û Efrînê bigihîne hevdu ew îhtîmal heye Amerîka ji tirkan re bêje 'baştir e ku em alîkariya kurdan bikin, alîkariya YPG'ê bikin li şûna ku Rûsya alîkariya wan bike.' Niha rewş hema hema bi wî aliyê de diçe.

**Peywendiya PYD'ê û Esad ew ê çi be? Gelo ne mimkûn e Esad êrîşî kurdan jî bike?**

Îhtîmal heye, wexta ku rejîm bi serkev e û hemû deverên Suriye bigre, di dawîyê de bixwaze teslîm bigre, eger PYD teslîm nebû wê şerê PYD'ê bike. Lê ew îhtîmal gelek hindik e. Belkî bê mecel be jî, ji ber ku Beşar nema dikare Suriye hemû bi dest bixe. Ne Rûsya dihêle ne Amerîka dihêle û ne hêzên navçeyên dihêlin. Yanî xwendina PYD'ê ji rewşa Sûriyê de rast derket. Şaşîtiyên wê di pratikê de hene, lê xwendina siyasî ya stratejîk ya PYD'ê rast derket, divê em îtîraf bikin wê meseleyê.

**Ew êşîrên êreb ji destkeftiyeke kurdan re li Rojava amade bûne ?**

Meseleya berjewendiyan ne meseleyek din e. Mînak Erdoğan îro bi Rûsya re îttîfak dike ji ber berjewendiyê ne ji ber hezkirinê ye. Erebên ku hene dinêrin çi ji wan re başe wê dikin. Îhtîmala sibê ew êreb bi PYD'ê re şer bikin. Lê îro berjewendiyê wan baş in, PYD'ê diparêzin. Cûdahiyê nakin li nav heremên kurdan. Li Efrînê milyonek penaber hene bi zimanê xwe dixwînin, êreban nakujin, xiristiyana nakujin. Bi zorê ji wan re nabêjin kurdi hin bibin. Meslehata wan îro wisa dixwaze, îhtîmal e ku sibê rewş bê guhertin.

**Tenê 50 kîlometre ma ku Kobanê û Efrîn bigihîjin hevdu, tû wê yeke çawa şîrove dikî jî bo siberoja Rojava?**

Ez nizanim Amerîka û Hikûmeta Tirkiyê çi kirine ji hevdu. Lê ez bawer dikim wê xeta sînor vebe. Yanî ne Cerablûs, Azaz hinekî di başûr de yanî Minbic û Daşîn yanî bakûrê Babê wê yekser biçin ser gundên kurdan li bakurê Helebê. Ew heremên ku 15-20 kîlometre nêzîkê sînor in, Cerablûs û heta em bêjin Raîmê di destê tirkan de bihêlin ji bo ku tirkan razî bikin. Hinek îslamciyên nêzikî Tirkiyê di wir de bihêlin. Îhtîmalek wisa heye. Di qonaxa yekemîn de. Di qonaxa dûyemîn de wê çi bibe ez nizanim.

**Ew yek ji bo pêşeroja kurdan çi bi xwe re bîne?**

Hemû opsiyon vekirîne. Kurd hêj ne gihiştine kenara asayîşa aramiyê. Kêştiya wan di nav deryayekî de ye, pêşketin heye lê wê li kuderê peya bibin em nizanin. Wexta ku li hevdû bikin hevkariya hevdû bikin, ka em ê binhêrin Îran û Rûsya li hev dikin, Tirkiye û Rûsya li hev dikin, kurd jî dikarin li hev bikin çima PKK û PDK bi hevûdin re neaxivin? Gerek êdî nêzîkê hev û din bibin. Dikarin ji tirkan re bêjin, 'çawa hûn destê xwe dirêjî filan cihê dikin, em jî kurd in berjewendiyê me yê hewbeş jî hene, em jî dikarin bi hevûdin re kar bikin.' Ez nabêjim bila peywendiyên li gel Tirkiyê bên birîn, li gel Îranê bên birîn, na lazim e. Lê peywendiyên li gel birayên xwe jî neyên birîn ev girîng e.



# Partiyên Bakûr piştevanên Rojhilat in

Mehmet Emin Kan




Di Newroza 2016'an de rayedarên Partiya Demokrata Kurdistana Îranê (PDKÎ) tevî Pêşmergeyan li quntara Çiyayê Keleşînê yê di navbera Rojhilat û Başûr de li hev kom bûn. Di wê kombûnê de PDKÎ'yê biryar da ku ew ê êdî Pêşmerge bişînin nav gund û bajarên Rojhilat û eger artêşa Îranê êrîşî wan bike ew ê Pêşmerge bersiva êrîşan bide. Bi sedan Pêşmergeyên PDKÎ'yê derbasî ser sînorên di navbera Başûr û Rojhilat bibûn û bingehên xwe yên leşkerî danîbûn û derbasî Rojhilat bibûn.

Rayedarên PDKÎ'yê gotibûn 'eger rejim dijayetiyê bi destkeftiyên kurdan bike ew ê bersiva Îranê bidin. Nêzîkî du hefteyan e di navbera Pasdarên Îranê û Pêşmergeyên PDKÎ'yê de şerekî dijwar heye û şer li hemû bajarên Rojhilat belav bûye. Li gor zanyariyên hatine wergirtin heta niha 150 leşkerên rejima Îranê hatine kuştin û 9 Pêşmergeyên PDKÎ'yê jî jiyana xwe ji dest dane.

Artêşa Îranê piştî vegera Pêşmergeyan a ji bo Rojhilat, dest bi êriş û rûxandina gundên kurd kir û li ser gel zext û zilma xwe zêde kir. Ligel wê yekê Komalaya Zehmetkêşên Kurdistana Îranê jî ligel PDKÎ'yê dest bi xebatên hevbeş kir û hat zanîn ku danûstendinên yekîtiyê di navbera layanên din yên Rojhilatê Kurdistanê de jî heye.

Serokê HAKPAR'ê Refik Karakoç, Cihgirê Serokê PSK'ê Bayram Bozyel, Serokê PDK Bakûr Sertaç Bucak, Serokê PDK-T'ê Mehmet Emin Kardaş, Sekreterê Tevgera Azadî Sitki Zilan, Serokê ÖSP'ê Sinan Çiftyürek û Serokê PAK'ê Mustafa Özçelik proseya nû ya li Rojhilatê Kurdistanê destpêkiriye û danûstendinên yekrêziyê ji BasNûçe'yê re şîrove kirin.

### Serokê HAK-PAR'ê Refik Karakoç: Şerê wan şerekî helal û heq e

Dewleta Îranê riya demokrasiyê girtiye, lê Îranê gelê kurd, gelê Kurdistana Rojhilat, aliyê aşitî û demokrasiyê de rê nabînin ku xebatê bikin û mafên xwe biparêzin. Ji bo wê yekê ji bilî şer rê nema ye. Şerê wan şerekî helal e û heq e. Ji bo mafên xwe şer dikin, ji bo ku partiyên Rojhilat di nav xwe de yekitiyê ava bikin jî em gelek kêfxweş in. Tenê ne di Rojhilatê de, di hemû perçeyên Kurdistanê de û ji bo Rojhilat yekîtî ji bo gelê me pirr girîng e. Dive her çar perçe di nav xwe de yekîtiya xwe çêbikin ku em her çar perçe karibin piştgirî û alîkariya hevûdin bikin. Îro em wek HAK-PAR dixwazin ku yekîtiya di Rojhilat de di nav partiyan de çêbûye girîng û pir baş dibînin. Ji xwe li wî şerî de em piştgiriyê û alîkariyê didin wan."

### Cihgirê Serokê PSK'ê Bayram Bozyel: Em piştgiriya wan dikin

Mafê kurdan heye ku li wê derê li hember rejîma totalîter û li dijî zor û zilmê şer bike. Demekî dirêj e ku hêzên Rojhilata Navîn navber dabûn şerê çekdarî, ji bo xatirê qazancên Kurdistana Başûr. Ji bo ku li wir nebe hedefa Îranê û Îran zextê li ser Herema Kurdistanê neke. Xûya ye ku îro rewş guheriye û li gor xwe biryar dane ku careke din dest bi şerê çekdarî bikin.

Nûnerên partiyên siyasî yên Bakûr eşkere dikin ku ew berxwedana Pêşmergeyên Rojhilatê ya li dijî rejima Îranê bi bilindî dinirxînin û ew piştevaniyê li her biryara layanên siyasî yên Rojhilatê dikin.

Em bi her awayi li wê biryara wan rêz digrin. Em piştgiriyê didin wan ku ew ji bo xwe çi rast dibînin, ew ji bona me rast e. Em şûna wan de derbarê li wir siyaset ne afirînin û tespîtan nakin. Ya din jî li hevkirina wan, yekîtiya wan; PDKÎ, HDK, PAK, Komele cihê kêf xweşiyê ye. Di carên wisa de hatina ber hev ya hêzên kurd ji bo hevkariyê tiştekî gelek pîroz û muhîm e. Di pêşerojê de wê çawa bibe em nizanin. Wê zêxtê Îranê li ser Herema Kurdistanê çawa be û Kurdistan çiqas karibe li hember zextên Îranê ber xwe bide, helwesta Amerîka û hêzen navdewletî li hember rewşa nû çawa bibe em nizanin. Lê ez bawer dikim ku hêzên navdewletî di serî de Amerîka wê piştgirî bide kurdên Îranê. Ji ber ku her çiqas navbera Amerîkayê , hêzên rojava û Îranê de peymanek hebe jî di demên dawîn de, Îran bûye hêzekî xeter, hem ji bo kurdan hem jî ji bo pêvajoya dahatiya Rojhilata Navîn û bendekî, astengiyekî mezin e li hember avakirina aşitî û aramiyê û herwiha li pêşiya Amerîkayê. Ez hêvî dikim ku ev hereketa kurd piştgirî bistîne ji dinyayê. Em jî wek PSK û wek kurdên Bakûr, manevî, siyasî û ûjdanî çi bikeve ser milê me em amade ne ku piştgiriya wan bikin."

### Serokê PDK-T M. Emin Kardaş: Yekîtiya Rojhilat cihê kêfxweşiyê ye

"Li kuderê dibe bila bibe, li kîjan axa Kurdistanê be; Bakûr, Başûr, Rojhilat û Rojava li kuderê be, wexta ku hêzên kurd li pêşberî dagirkeran de yekîtiya xwe bikin û pişta xwe bidin hev û mil bi mil şerê dijminê xwe bikin ew tiştekî baş e û divê ew her dem wisa be. Tû îtîraza tu kurdekî dive tune be. Ji xwe li beşa Îranê rêxistinên ku hene tevahiya wan mirov dikare bêje ku rêxistinê çekdar in. Sedama wî jî ku Îran dijminatiya gelan dike û her roj însana darvedike, şer dewam dike. Ji wê sedemê rêxistinên Îranê bi piranî şerê çekdarî dikin. Dixwazî bila çekdarî be, dixwazî bila siyasî be, wextekî rewş gihiya wê astê ew demhêzên siyasî ji mecbûr dest biavêjin çek. Lewra pir tên kuştin û îdamkirin, tu mafê rewa ji kurdan re nas nakin ji ber wê kurd mecbûr dimînin mafê siyasî, aşitî û mafê rewa nayên nîşandan her siyaset dikarê çekdarî bike. Ev yekîtiya ku li Rojhilat destpê kiriyê belkî cesaret bide kurdên din jî. Ew rewş ji bo tevahiya kurdan erênî ye."

### Serokê PDK Bakûr Sertaç Bucak: Yekîtiya wan kilîda serkeftinê ye

"Birayên xwe yên êzîz yên Rojhilatî pîroz dikin. Ew yekîtiya wan, ew danûstendina wan a navxweyî bûye kilîda serkeftinê li Rojhilatê Kurdistanê. Bi taybetî em silavên xwe yên germ dişînin ji bo Pêşmergeyên qehraman yên Rojhilat re û em bi giştî piştgiriya wan dikin. Ji bilî wî em li ser malperên înternetê, torên civakî propagandayê wan jî dikin. Bi taybetî li Bakûr belav dikin. Îro jî pênc partiyên Kurdistanî li Kurdistana Bakûr daxuyaniyek hevbeş derxistin ji bo piştgiriya şerê Peşmergeyên ku li Rojhilat şer dikin û li dijî êrişên dewleta Îranê bi taybetî tehdîdên wan li ser Kurdistan û li ser Herêma Kurdistanê. Yekîtiya wan û destdayîna wan a hevdû, kilîda serkeftinê ye. Ew tiştek gelek muhîm û girîng e, em wan pîroz dikin. Em hêvîdar in ku ew bibe mînak ji bo perçeyên din ku nav wan de yekîtiyek wisa tûne. Ez bawer im gelê me yê Rojhilat ew ê serkeftî bibe."

### Serokê ÖSP'ê Sinan Çiftyürek: Yekîtiya çê bûye pîroz e

"Em geşedanê Rojhilatê ji nêz ve dişopînin û me wê rewşa dawî wek ku Rojhilat rabû ser lingan bi nav kir. Di navbera partî û hêzên me yên Rojhilat de demeke dirêj e meseleya yekîtiyê tê niqaşkirin. Em hêvîdar in gavekî pêş de wek şêveyekî netewî pêk bînin. Ya din Rojava li cihanê hat qebûlkirin. PDKÎ jî çû li Almanya hat qebûlkirin. Paşê çû Amerikayê hat qebûlkirin. Lêbelê çi wextê Îranê Peymana li Amerîka re Peymana Nukleerî çê kir, me got ew dem wê Rojava bikeve lê neket. Em ji Kurdistana Rojhilat jî hêvîdar in ku tiştên baş pêk werin. Divê gavekî pêş de li Rojhilat yekîtiya netewî pêk were. Eger li wê derê gavekî bê avêtin belkî tesîra wî li ser Başûr jî bibe. Meseleya me ya girîng li Başûr yekîtî di navbera me de tune. Li Rojhilat gavên ku hatiyê avêtin pir girîng e. Eger destê rejîma Îranê di nav yekîtiyê de qels bikin û bibirin ez bawer im ku wê bi serkevin. Yekîtiya ku çê bûye tiştek pir pîroz e."

### Sekreterê Giştî yê Azadiyê Sitki Zilan: Nêzbûna kurdan hevce û ferz e

"Di çar perçeyê Kurdistanê de em aşitiyê û yekîtiyê dixwazin. Heta ku kes êrişî me neke divê em êriş nekin. Ji bo Rojhilat jî em wê tiştî difikirin. Heta îmkan hebe şer û pevçûn tunebe wê baş be. Devleta Îranê bi hêz e. Ez di şertên anha de bawer nakim kurd bi sîlahê karibin bi serkevin. Di Bakûr û Rojhilat de dive siyaseta danûstendinê hebe. Lê şêrê niha ku li Rojhilat heye ji mecbûriyê ye. Ew neçar mane ku şer bikin. Ya na dive ew jî hevce ye ku mirov munaqaşê bike û piştre tehlîl bike. Nêzbûna kurdan hem hevce ye û hem jî ferz e. Gelê Kurdistanê aniha îttîfaka kurdan dixwaze. Dinya jî dibejê eger hûn dixwazin bibin xwediyê statûyekî dive hûn yekîtiya xwe çê bikin ku em jî bikaribin alîkariya we bikin. Heta yekîtî li Kurdistana Başûr çê nebû pêş de neçûn. Statûya ku anha heye jî bi nêzbûna PDK û YNK'ê hat avakirin. Li Bakûrê Kurdistanê jî îttîfaqa me hebûna wê dewleta Tirkiyê li ser masê rûniştina, mase amade ye çareyeke, reyeke din ya wan nîne. Lê îttîfaqa me tûne ye. Em hêvîdar in tesîra yekîtiya Rojhilat li aliyên din jî çê bibe."

### Serokê PAK'ê Mustafa Özçelik

"Em hevpeymaniya PDKÎ û Komelayê, di tifaqa hêzên Rojhilatê Kurdistanê de wek gaveke girîng dibînin. Hêvî dikin ev hevpeymanî berfirehtir bibe. Îro li dijî rejîma Îranê, rêya pêşdebirin û geşkirina doza azadîya Kurdistanê beriya her tiştî di hevpeymanî û tifaqa hêzên netewî de derbas dibe. Mixabin rejîma Îranê ji xeynî şerî jî tu rêyê ji miletê me re nahêle. Divê hêzên Rojhilat bi hemahengiya hêzên navnetewî, vê têkoşîna xwe pêş de bibin."

BasNûçe 4 - 10 Tîrmeh 2016


# Agirê li Rojhilat gur dibe





Kerem Arî

Di çend hefteyên dawîn de li Rojhilatê Kurdistanê ku proseyeke nû destpê kir, tansiyona siyasî jî her diçe bilind dibe. Rejima Îranê li dijî vegera Peşmerge û nerazîbûnên gel li seranserê Rojhilat leşker û hêzên ewlekarîyê bi cîh kir û li ba-jarê Şinoyê êrîşî Peşmerge kir. Piştî vê yekê li çendîn deveran di navbera hêzên kurd û artêşa İranê de şer qewimîn. Di şerê Şînoyê de 6 Pêşmerge 21 Pasdar ji-yana xwe ji dest dan. Bi vî awayî çirûska şerê Rojhilatê vêket. Piştî Şinoyê li gelek deverên wek; Pîranşar, Serdeşt, Saqiz, Sawlawa, Mahabad û Merîwanê pevçûn çêbûn. Her wiha hêzeke bi navê "Teyrebazên Zagrosê' êriş bir ser leşke-rên İranê û çendîn leşker kuştin.

Li gorî daxuyaniyên PDKÎ'yê di şerên van bajaran de Îranê hêzên mezîn şandin Merîwan û Saqizê. Di pevçûnan de li gor çavkaniyên heremî bi giştî 9 Peşmer-geyan jiyana xwe ji dest dan û herî kêm 50 leşker û besîc jî mirin.

Li dijî kiryarên tund ya Îranê, Partiya Demokrata Kurdistana Îranê (PDKÎ) û Komeleya Şoreşgerên Zehmetkêşanên Kurdistana Îranê (Komele) heypey-manyeke çekdarî pêkanîn. Herwiha partiyên din yên Rojhilat jî hevdîtin û danûstandinên xwe yên ji bo firehkirina hevpevmaniyê zêdekirin. Çav li rê ye ku di demekê nêzîk de di nav hêz û partiyên Rojhilat de bereyeke hevkariya leşkerî bê damezirandin.

Di vê navberê de 5 partî û rêxstinên kurd yên li Bakûr; Azadi, PDK–Bakur, PAK, PAKURD û PSK di daxuyaniyeke hevbeş de piştgiriya xwe bo hêzên Ro-jhilat anîn ziman û êrişên rejima İranê yên ser xelqê Rojhilat û sînorê Başûr şermezar kirin. Herwiha koma parlamenterên kurd yên Meclîsa İranê jî ji bo rawestandina şer dest bi hewldana navbenkariyê kirin. Li gor nûçeyên derbarê mijarê de heta niha ji vê hewldanê tû encamek êrênî nehatiya girtin.

Li aliyê din Belûciyên Îranê û rêxistina Mucahîdên Xelk jî jî piştgiriya xwe ji bo kurdan eşkere kir û bo malbatên Peşmergeyên ku jiyana xwe ji dest dan, daxwa-za sersaxiyê kirin. Rexistana Belûcî ya bi navê "Ceyş el Edîl" li dijî rejîma Îranê jî şerê çekdarî dimeşîne. Şer û pevçûnên Kurdistanê li Tahranê jî tesîr kirin. Serokê Dinî yê rejima Îranê Ayetullah Elî Xameney, Serfermandarê Îranê Hasan Fîrûzabadî ji ser kar girt. Xameney li şûna Fîrûzabadî, Fermandarê Artêşa Pasevanên Şoreşa Îslamî Gen-eral Mihemed Hoseyn Baxerî, ji bo serfermandariyê erkdar kir. Serfermandarê kevin Hasan Fîrûzabadî 27 salan weke şêwirmendê hêzên taybet hatibû erkdarkirin.

### İran, sînorê Başûr topbaran dike

Rejima Îranê di nava hefteyê de dorûbera Sîdekan a Hecî Omeran a Başûrê Kur-distanê bombardûman kir. Beramberî bombardûmana Îranê Hikûmeta Herêma Kurdistanê bi tundî nerazîbûn nîşan da û ji Îranê xwest dawî li bombardûmanê bîne. Serokwezîrê Herêma Kurdistanê Neçîrvan Barzanî jî di nava hefteyê de pêşwazî li desteyeke Îranê kir û ji wan jî re eşkere kir ku divê Îran demildest dev ji êrişên ser herêmên Kurdistanê berde.

Rojnameger Selîm Zencîrî, Helmet Maruf û endamê PDKİ'yê Dara Natîq geşedanên heremê ji BasNûçeyê re nirxandin.

### Helmet Marufî: Tirsek bi rejimê re peyda bûye

Rojnameger û çavdêrê siyasî Helmet Maarufî ji BasNûçe'yê re tekezî kir ku bi derbasbûna Pêşmergeyan ji bo Rojhilatê qonaxeke nû destpê kiriye û piştî pevçûnan tirseke mezin bi rejima Îranê re çêbûye. Marufî balkişand ser ji kar derxistina serfermandarê artêşa Îranê jû û wiha berdewam kir: "Demeke dirêj e Pêşmerge ne li Rojhilatê Kurdistanê bûn. Hêdî hêdî vedigerin nava xelkê. Li gor xwendina min rejima Îranê ji hatina Pêşmergeyan gelekî ditirse. Piştî 27 salan Serfermandarê Artêşa Îranê hat guhertin. Elî Xamaney bi taybetî li ser vê mese-leyê disekine û berê xwe dide vê meseleyê û tirsek bi rejimê re

Piştî ku li çendîn deveran di navbera Peşmerge û artêşa İranê de şer qewimîn û li Şînoyê dû jinên kurd ji aliyê leşkeran ve hatin kuştin, li Ro-jhilat tansiyon bilind bû. Li Mahabad, Seqiz, Pîranşar, Şino, Merîwan û çendîn bajarên din li dijî rejima Îranê nerazîbûn zêde dibin û xelk bi piştevaniya Pêşmergeyan li hemberî hêzên Îranê çalakiyan li dar dixin.

çêbûye. Rejimê dest bi şerekî medyayî kiriye. Bi hezaran leşker û çekên giran li Kurdistanê bi cih kirine."

Marufî, bal kişand ku bi vegera Pêşmerge kêfxweşî û dilşadiyek bi xelkê re pey-da bûye û xelk piştgiriya Pêşmergeyan dike. Herwiha Marufî çalakiyên li ba-jarên Rojhilat bi bîr xist û wiha berdewam kir: "Xelkê Rojhilat gelekî kêfxweş e û dilşad e ji ber ku êdî dizanin ku Pêşmerge xwediyê wan e û li wan xwedî der-dikeve. Xelk bi germayî pêşwaziyê li Pêşmergeyan dike. Li Seqiz, Mahabad, Pîranşarê û li bajarên din xelk bi helwesta xwe piştgiriya bi Pêşmerge anî ziman. Di siberojê de em ê bibînin ka ev hewldana PDKÎ'yê taktîkek e yan stratejiyek e. Bi nezera min eger xelk piştrast be ku ev yek ne taktîk e ew ê zêdetir beşdarî nav xebatan bibe."

### Selîm Zencîrî: Wê dewam bike

Selîm Zencîrî jî BasNûçe'yê re daxuyand ku pevçûn li bajaran berdewam dikin û ew ê ev xebat bidome. Zencîrî wiha pê de çû: "Di encama şerê Kosalan de dawi-ya çar rojan 3 Pêşmerge şehîd bûn, şer wê dewam bike. Çîrûska agirê şer li ba-jarê Şino destpêkir. Pîştre Pîranşar, Serdeşt, Mahabad, Sawlawa Saqiz û Merîwanê rû da. Teyrên Zagrosê jî 7 polîs li Saqizê kuştin. Hêzên rejîmê li Çiyayê Kosalanê Pêşmerge dorpêç kir û nehêla Pêşmerge biçe Merîwanê. Hemî çekên xwe yên giran ve êrîş birin ser Pêşmerge. Lewre dever hêj gelek ewle nîne em tam nizanîn ka çi talefat û kuştin çêbûne."

Zencîrî bal kişand ser hêza çekdarî û neyînî ya bi navê Teyrebazên Zagrosê jî eşkere kir ku ew nizanin bê ew hêz bi ser kê ve ne. Teyrebazên Zagrosê di nava hefteyê de li hember polîsên Îranê li bajarê Seqîzê çalakiyek li dar xistin û di encama çalakiyê de 7 polîs hatibûn kuştin. Teyrebazên Zagrosê di daxuyaniyekê de Îranê hişyar kir ku eger Îran êrîşên xwe dewam bike ew ê Rojhilatê jê re bi-kin dojeh!

### Dara Natîq: Pêşmerge bi piranî li bajaran bi cih bûne

Endamê PDKİ'yê Dara Natîq jî got ku ew li hember rejîma Îranê berxwe didin û gazî xelkê kurd dikin dibêjin ew wek ne tenê parêzvaniyê di ber Rojhilatê Kur-distanê de ew amade ne her çar parçeyên Kurdistanê biparêzin. Natiq ragihand ku Pêşmerge di nava xelkê de ye û li hemû bajarên Rojhilat bi cih bûne. Natiq wiha berdewam kir: "Hêzên Pêşmerge li piraniya bajarên bi cih bûye. Xelkê Ro-jhilatê Pêşmerge gelek baş pêşwazî kirin û Pêşmerge peywendî bi xelkê re danîn. Bi teybetî bajarê Şino, Merîwan, Serdeşt, Pîranşar, Saqiz û û Mehabadê ev yêk xurt e. Di şer û pevçûnên heta niha 9 Pêşmergê me şehîd bûne û bi dehan pasdar û leşkerên Îranê hatîne kuştin. Li gorî Pêşmerge di şer de ji 50 zêdetir Pasdar û leşker hatîne kuştin û gelek jî birîndar bûne. Li Şino 11-12 Pêşmergayan li hem-berî 2000 pasdarên Îranê berxwe dan. Mixabin me 6 şehîd dan û dehan leşkerên Îranê jî hatin kuştin."

Li aliyê din Natiq destnîşankir ku di şerê Kosolanê de wan termên 6-7 leşkerên rejimê jî bidest xistine û termên 2 Pêşmergeyan jî di destê Îranê de ne. Natiq daxuyand ku termên leşkerên rejima Îranê radestî wan kirine, lêbelê heta niha Îranê cenazeyê Pêşmergeyan radestî wan nekiriye.

